# We ne ji bo şer, bo mirinê dişinim!

Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî, di dema ku Şervanên Sipahiyên Barzanî ji bo tevli Artêşa Kurdistanê bibin, şand eniya şer de got, “Ez we ji bo şer naşînim, we dişînim mirinê”

Barzanî ku piştî êrişen DAIŞ’ê di bin fermandariya kurê xwe Mesrûr Barzanî de hêzeke 2 hezar û 360 kesên ji xizmên xwe pêktên şand eniya şer axaftinek kir û got, “Kurdistan namûsa we ye, dayika we ye. Guleya yekem hûnê biteqînin, pêşiya hemûyan hûnê bimirin”

Barzanî wiha axivî: Zarokên Kurdistanê, Kurdistan dayika we ye, namûsa we ye. Ji bilî paşvekişînên taktîk ger hûn çeperan biterikînin, hûnê namûsê bidin dijmin. Ez we ji bo şer naşînim, we dişînim mirinê. Yek leşker jî li pişt we nemîne, divê hûn dîsa şer bikin. Pêşmergeyên berê bînin bîra xwe. Dema dijmin dihat, ji bo ku çeperên xwe bernedin, çokên xwe girêdidan û xwe di çeperan de asê dikirin. Bi sedan Pêşmergeyên me bi vî avayî gihîştin şehadetê. Ger hûn bikevin tengasiyê, di çeperên xwe de çokên xwe girêdin û şer bikin. Ew sekna we, wê hem dijmin bitirse û hem wê ewlehiyê bide gelê kurd. Wekî Bapîrê xwe Şêx Evdilselam, Bavê xwe Mistefa Barzanî û bi hezaran şehîdan şer bikin. Wisa şer bikin ku bila cîhan bibîne ku kurd û Kurdistan têk naçin.

Kurê min Mansûr,: her şervanekî têxê çeperekî de, peşiyê hûn bimirin, guleya yekem hûn biteqinin, ewil hûn şehid bikevin, da kû pêşmerge jî li dû we werin.




BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar:16 16-22 Tebax 2014 basnews.com


## Ganî Mîrzo:

Jiyanek li ser şopên Ziryab

R16





### Derdora Şengal û Zûmarê ji DİAŞ'ê tê paqîjkirin

# DAİŞ siwar hat peya diçe



Piştî êrîşa li hember Şengalê di pêvçûnên ku qewimîn de DAÎŞ’ê derbeyen giran xwarine û hejmarake zêde ji endamên wan hatine kuştin ku di nav de emîrên wan jî hene. Dîsa gelek endamên wan dîl hatine girtin. Gelek çekên giran yên ferdî yên endamên DAÎŞ’ê ku li dû xwe hiştin jî ketin destê Pêşmergeyan.

Niha li Kurdistanê li 5 eniyan şer beredwam dike. Hêzên Pêşmerge li Eniya Rojava’yê Dîcle’yê Mexmûr, Kevir, Zimar û Rabîa bi piranî ji hêzên DAÎŞ’ê rizgarkirin. Li Eniya Rojhilatê Mûsilê li herêmên wek Hemedaniye, Mehmûdiye, Tilkêf, Başik, Bazan û Xazir operasyonên li hemberî DAÎŞ’ê didomin. Rûpel 02-03

## Ezdî ji Şengalê dadikevin

Di êrîşên DAÎŞ’ê ya li hember Şengalê de ku mal û gundên êzidiyan talankirin û êzidî duçarî koçê bûn û xwe spartin Çiyayê Şengalê. Ji destpêka êrîşan vir ve gelek êzidî hatin kuştin, bi sedan jin û zarok hatin dîlgirtin û li gor nûçeyan bi hezaran êzidî jî koçber bûn. Rûpel 08-09

**Salih Muslîm:**

## Têkiliya me bi rejimê re nîne

Helbet li Rojava gelê me biryara serxwebûnê bistîne emê li hember wê rêzdar bin. Heya niha daxwaziyeke wisa derneketiye holê. Me vebijêrka ku em bi gelên din re di bin banekê de bijîn hilbijartiye. Helbet dibe ku di pêşerojê de şert û merc biguherin û li gor vê daxwazên gel jî bêne guhertin. Wê demê emê jî biryara xwe li gor daxwazên gel bidin. Rûpel 10

### Li Amedê Komele ya Xizir!

Komeleya Têkoşîna Li Hemberî Xizaniyê û Pêşveçûna Domdar ya Sarmaşik berî 7 salan li Amedê hat damezirandin.




Rûpel 13

## Koma Amed

Di muzîka kurdî de rawestgehekî

R15

## Dimilkî

Du you speak zazakî?

R07



## Pêşmerge li hemû eniyan serdest e

# DAÎŞ siwar hat peya diçe!

Êrîşên DAİŞ'ê yên ku di 2'yê tebaxê de li hember Şengalê destpêkiribûn û pêvçûnên ku piştî wê qewimîn bi piranî sivik bûn lê trajediya koçê ya li Kurdistanê berdewam e. Li aliyekî êzidiyên ku li Çiyayê Şengalê asê mabûn têne rizgarkirin û li aliyê din jî koçberên ku hatine Dihokê li qampan têne bicîkirin.

Piştî ku Pêşmerge Şengal bi temamî ji DAÎŞ'ê rizgar kir çavlirê ye ku giraniya şer bide eniya Mûsilê. Di vê navberê de êrîşên hêzên Emerîka yên esmanî jî bê navber berdewam in. Herwekîdin ji bo Pêşmergeyan piştgiriya çekan a Emerîka, Fransa, İngiltere û Elmanya jî destpêkir. Beşa çekan ya yekem ku Emerîka şand, ji aliyê Wezareta Pêşmerge ve hate girtin û li êniyên şer hatin belavkirin.



### Rewşa eniyên şer

Niha li Kurdistanê li 5 eniyan şer beredwam dike. Hêzên Pêşmerge li Eniya Rojava'yê Dîle'yê Mexmûr, Kevir, Zimar û Rabîa bi piranî ji hêzên DAÎŞ'ê rizgarkirin. Li Eniya Rojhilatê Mûsilê li herêmên wek Hemedaniye, Mehmûdiye, Tilkêf, Başik, Bazan û Xazir operasyonên li hemberî DAÎŞ'ê didomin.

Li gor peyamnerê BasNûçe Zeyat Cebo, bêyî ku carinan di navbera hevkarên DAÎŞ'ê eşîrên sunne û Pêşmergeyan de pêvçûn derdikevin, herêmên wek Rabîa, Zimar, Şengal û herêma Rabîa ya bi aliyê Rojava bi temamî ji DAÎŞ'ê hatiye rizgarkirin. Li aliyê Şengal û herêma Rabîa ya bi ser Rojava ve hêzen YPG'ê û Pêşmerge bi hevkarî tevdigerin. Tê ragihandin ku DAÎŞ'ê li vir derbeyên giran xwarine û gelek çekên wan hatine bidestxistin. Wekî din li heman herêmê êrîşên hêzên esmanî yên Eemerîka jî berdewam in.

Di vê navberê de hat ragihandin ku Pêşmerge yekîneyên xwe yên li Mûsilê zêdetir kirine û amadekariyên ku piştî demekê dest bi êrîşan bike dike.

Artêşa Kurdistanê piştî operasyonên li Şengal, Zimar, Rabîa, Kevir û Maxmûrê yên li dijî DAÎŞ'ê, Maxmûr û Kevir bi temamî rizgarkir. Li gor nûçeyên ku ji herêmê tên, Pêşmergeyên ku beriya çend rojan Zimar ji DAÎŞ'ê stendin, li Şengalê bi taybetî li nava gundên ereban operasyonan li dijî endamên DAÎŞ'ê ku li wan deran weşirî ne li dardixe. Wekî din Artêşa Emerîka li deşt û çiyayên Şengalê bi firokeyan bo tespîtkirina endamên DAÎŞ'ê operasyonan didomîne û di êrişên wan de gelek konvoyên endamên DAÎŞ'ê hatine bambebarankirin û derbeyên mezin li wan hatine xistin. Li gor agahiyan firokeyên İngiliz jî beşdarî van eparasyonan dibin û ew rewş dê demeke din bidome.

**Hêzên Pêşmerge li Eniya Rojava'yê Dîle'yê Mexmûr, Kevir, Zimar û Rabîa bi piranî ji hêzên DAÎŞ'ê rizgarkirin. Li Eniya Rojhilatê Mûsilê li herêmên wek Hemedaniye, Mehmûdiye, Tilkêf, Başik, Bazan û Xazir operasyonên li hemberî DAÎŞ'ê didomin.**

Wekî din li Eniya Kerkûkê jî çarşema borî DAÎŞ'ê dest bi êrîşan kiribû û di navbera wan û Peşmergeyan de gelek pêvçûn qewimîbûn. Piştî ku Pêşmergeyan bersiv da, DAÎŞ'ê nikarî ku bikeve navçeya Tûzxurmatû û bi wendahiyên mezin paş ve kişiya.

Di heman demê de li nêzikî Kerkûkê, bi taybetî jî li warên ku erebên sunne ku alîgiriya DAÎŞ'ê dikin lê dijîn Celawla'yê pêvçûnên cûrbecûr li kolanan diqewimin. Wek tê zanîn DAÎŞ'ê beriya çend rojan êrîş biribû ser Celawla'yê bankeya bajêr talan kiribû. Piştî ku Pêşmerge li vir jî bersiva êrîşan da hêzên DAÎŞ'ê paş ve kişiyan û Fermandarê Pêşmergeyan Mahmûd Sengawî daxuyand ku nêzî 100 endamên DAÎŞ'ê hatine kuştin ku di nav de emîrekî wan jî heye.

Di heman demê li bajarê Rojava Hesekê jî YPG li hemberî DAÎŞ'ê dest bi operasyonekê kir. Hêzên YPG'ê ku li Taxa Xwêran êrîşî mewziyên DAÎŞ'ê kir û bi dehan endamên wê kuştin.

### Îtirafên DAÎŞ'iyan

Li gor nûçeyan piştî êrîşa li hember Şengalê di pêvçûnên ku qewimîn de DAÎŞ'ê derbeyen giran xwarine û hejmarake zêde ji endamên wan hatine kuştin ku di nav de emîrên wan jî hene. Dîsa gelek endamên wan dîl hatine girtin. Gelek çekên giran yên ferdî yên endamên DAÎŞ'ê ku li dû xwe hiştin jî ketin destê Pêşmergeyan. Tê ragihandin ku di navbera fermandarên DAÎŞ'ê de şirove û rexneyên li ser êrîşa wan ya li Kurdistanê têne kirin û ew vê yekê wek şaşiyekê binavdikin.



Li gor ku di medya civakî de hat weşandin, di axaftineke ku di navbera Cîgirê Serokê DAÎŞ'ê Baxdadî Ebû Husen el-Ensarî û rêvebirekî din de hatiye kirin de ew gotin hatine ziman, "Min ji xelîfe re got. Ew êrîş wê Bexda û Hewlêrê ber bi hev bibe. Wê bibe sedema vegera Emerîka û Fransa ya li Iraqê. Herwiha wisa jî bû. Emerîka ku ji bo vegera Iraqê di nava dudiliyê de bû niha tê û bombebaran dike û şiî ji rewşê kêfxweş in. Êrîşa li Kurdistanê şaşitiyek bû."

Wekî din rêvebirê DAÎŞ'ê di axaftina xwe de tîne ziman ku 3 berpirsên wan yên girîng di pêvçûnan de hatine kuştin, gelek endamên wan yên birîndar li Mûsil û bajarên din têne dermankirin û gelekan jî berê xwe dane Sûriye. Rêvebir dibêje heger ku ew êrîşî Kurdistanê nekin, tu niyeta kurdan ya êrîşkirinê jî nîn e.

### Li Kurdistanê nîşana hewarê

Li Hewlêr û Duhokê 24 seatan tîmên têkoşîna bi terorê re di teyakûzê de ne da kû rê li kesên ku bixwazin derbasî bajaran bibin bigirin. Tê ragihandin ku di nava hefteya borî de polîsên Duhokê 21 operasyon li hemberî DAÎŞ'ê pêkanîne û rê li hewildana ketina wan ya bajêr girtine. Li Hewlêr û Silêmaniyê jî Hêzên Asayîş û Parastinê yên Dij-Teror operasyonên xwe yên li hemberî DAÎŞ'ê bê navber didomînin. Berdevkê Pêşmerge jî daxuyand ku erebên li paytextê bê navber têne raçavkirin.

### Hêzên Sîpahiyên Barzanî li eniya şer in

Piştî ku êrîşên DAÎŞ'ê destpêkirin Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî jî çû Maxmûr û Kevir û li vir bi rayedarên Pêşmergeyan re li ser rêbazên ku dê bêne şopandin ket nava danûstandinê. Herwekî din Barzanî serdana Gerilayan jî kir û bi wan re li hev rûnişt.

Herwiha Barzanî di roja duyemîn ku êrîşan destpêkir, nêzî 2 hezar 500 şervanên Sîpahîyên Barzanî ku di nava arteşê de cî digirin di bin fermandariya kurê xwe Mesrûr Barzanî de şand eniya şer.

Di nava Sipahiyên Barzanî de ji malbata Barzanî 22 kes di şerê bi DAÎŞ'ê de qadên pêşî de cîh digirin. Şervanên Barzanî wek komên herî xurt yên arteşê li Maxmûr, Şengal, Kevir û Zimarê li hember DAÎŞ'ê şer dikin.

### Berpirsê PDK û du fermandar ji wezîfeyê hetin girtin

Li aliyê din Berpirsê Bûroya Birêxistinbûnê yê PDK yê Şengalê Serbest Bapîrî ji wezîfeyê hat girtin û ji partiyê hate dûrxistin. Piştî ku DAÎŞ'ê êrîş bir ser Şengalê û bi hezaran kes ji warên xwe bûn û gelek ji wan hatin kuştin, Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî xwestibû ku komîsyonek bê avakirin û lêkolînan bike da ku berpirsên vê derekvin holê.

Ji Bûroya PDK ya Şengalê berpirsek ji BasNûçe re axivî û da zanîn ku piştî lêpirsîna hate kirin Bapîrî wek yekem berpirsê trajediya Şengalê hatiye tespîtkirin, ew bi talimata Mesûd Barzanî ji wezîfeyê hatiye girtin û ji partiyê hatiye dûrxistin.

Di vê navberê de du fermandarên Pêşmerge jî, piştî ku DAÎŞ'ê Şêngal dagir kir û du tîmên Pêşmerge paş ve kişiyan ji wezîfeyê hatin girtîn û niha li dadgehê têne darizandin.

### Hevkariya Pêşmerge û HPG

Piştî êrîşên DAÎŞ'ê, bêyî Artêşa Kurdistanê di navbera PDK, YNK, KCK û YPG'ê de "Fermandariya Hevkar ya Parastinê" hat avakirin. Ew yekîne wê di çarçoveya parastina hevkar de li aliyê Şengalê pêywirdarbin. Ji ber ku Şengal nêzikî Rojava ku di bin kontrola PYD'ê de ye, ev hevkarî wek mecbûriyetekê da ber van hêzan. Herwekî din Gerîllayên PKK jî cara ewil ji derveyê mewziyên xwe yên li Qendîlê tên bi cîkirin û bi avayekî aktîf li Mexmûr, Şengal Zimar û Kevir piştgiriya Pêşmerge dikin.



### Ji nû ve Konferansa Netewî ya Kurdistan!

Di vê navberê de, tê ragihandin ku bi talimata Serokê Herêma Kurdistanê amadekariyên konferansa netewî ku wê bi beşdariya hemû hêz û partiyên kurdan pêk bê destpê bûne. Ji bo ku konferansa ku heta niha 3 caran hatibû taloqkirin pêk were, amadekarî ji nû ve hatine destpêkirin. Li gor îddiayan wê konferans di 3'yê mijdarê de pêk bê û wê Mesûd Barzanî serokatiya konferansê bike û konferans wê 3 rojan bidome.

Tê gotin ku wê di encamnameya konferansê de li ser ewlehiya Kurdan a hevpar bê sekinin. Di konferansa ku Kurd li hember êrîşên ku Kurdistanê hedef digirin wê vîzyon û gotineke hevpar wek armanc bê diyarkirin û li ser rewşa êzidiyan jî bi taybetî wê bê sekinin. Li gor îddiayan koferansa ku ji bo daxwaza KCK ya bidestxistina piraniya endaman pêk nehatibû, bi peyama Öcalan ya bo Mesûd Barzanî ku hefteyê borî gihîştibû destê wî dê bê organîzekirin.

## Mesrûr Barzanî:

Divê êrîşên Emerîka yên esmanî baregehên DAÎŞ'ê bombebaranke

Di vê navberê de Mûsteşarê Ewlehiya Navxweyî yê Herêma Kurdistanê Mesrûr Barzanî êrîşên Emerîka yên li dijî DAÎŞ'ê nirxand û got divê Emerîka êrîşên esmanî berfirehtir bike.

Barzanî di derheqê êrîşên dawî yen DAÎŞ'ê û êrîşên Emerîka yên hewayî ji CNN'ê re axivî û wiha got: Divê êrîşên hewayî yên Emerîka ku li dijî DAÎŞ'ê destpê bûne berfirehtir bibin û wek hedef baregehên DAÎŞ'ê bombebarankin. Divê mewzîyên wan jî bêne bombebarankirin.

Barzanî da zanîn ku heya niha tenê mewziyên eniyan wek hedef hatine bombebarankirin û wiha dirêjî da axaftina xwe: Heke ku Emerîka zûtir mudaxale kiriba dibû ku wê ew karesat nehata serê êzidî, îsevî û gelê Kurdistanê. Barzanî di axaftina xwe de destnîşankir ku çekên modern û giran yên Artêşa Iraqê bi tevahî ketine destê DAÎŞ'ê û'çekên wan ji yên Pêşmerge zêdetir û mezintir in û divê êrîşên Emerîka bi mewziyên eniyan nemîne.

Musteşar Barzanî ku bo piştgiriya Emerîka ya ji bo Pêşmerge û gelê Kurdistanê spasiyên xwe pêşkêşî Emerîka kir û got ku di navbera Bexda û Hewlêrê de bo şerê li hemberî DAÎŞ'ê koordînasyonek heye lê ew bi şêweyeke tixûbdar didome.





Welat Baz

# Zaxoka rengîn

Evder Zaxoka rengîn, bajarê stranan, wargeha dengxweşan û mala delalan e. Evder yaqûda Kurdistan, deriyê Cûdî û Garê, pira navbera Botan û Behdînan, Zaxoya şêrin e.

Zaxo li gor pergala rêvebiriya dewleta federal ya Kurdistanê bajarekî wîlayeta Dihokê ye.

Şêniya Zaxoyê 200 Hezar e. Bi bajêr ve girêdayî gelek gund û xopan hene.

Kurdên Zaxoyê bi zarava Kurmancî bi devoka Bahdînî diaxifin.

Şêniya bajêr ji bilî hin malbatên İsewî hemû Muslumanin. Di demên dawîn de malbatên Kurdên Ezdî jî li bajêr bicîh bûne. Herwiha gelek malbatên bakûrî jî li Zaxoyê dijîn.

Zaxo hem di navbera deşt û çiya de sînore, hem jî sînorên siyasî yên dewletên Tirk, Iraq û Sûrî digîjîne hevudû. Rêyên heremê jî girîngiya Zaxo yê bilind kirine. Reya Bazirganî û Reya Melîkî yanê Reya Hevreşim û Reya Mîr ji berî zayînê di dema Med û Asûriyan heta îro tê bikaranîn.

Rûniştvanên nav bajêr bi giştî Kurdin. Li hin gundên heremê filehên Kurd û yên Asûrî jî dijîn. Di demên kevn de li bajêr û derdorê gelek malbatên Cihû jî hebûn, lê wan barkir û çûn Israîlê. Cihûyên Zaxoyê ku niha li Qudsê bi navê Taxa Zaxo li meheleyekî dijîn di salên dawîn de serdana welatê xwe yê kevn dikin.

Zaxo di warê civakî de yek ji deverên balkêş yê Kurdistanê ye. Eşîrên Gulî, Berwarî, Silêvanî, Sindî û Koçer li heremê dijîn. Bajarê Zaxoya îroîn li 39 taxan belav bûye. Ji vana Kêste, Şehîdan, Serhildan, Gundik, Newroz, Mehla Qereça, Mehla Rîta, Mehla Kewa, Mehla Cihûyan, Mehal Qesabî, Mehla Sîkê, Mehla Fileha û Mehla Gundikê yên girîngin.

**Bajarê neviyê Pexember Nûh**

Navê bajêr dirêjî ciwanoka yekem ya mirovahiyê dibe. Wek tê zanîn li gor efsana Hezretî Nûh, keştiya ku ji tofanê rizgar bûye li ser Çiyayê Cûdî sekiniye û Malbata Nûh li derdora Cûdî belav bûye.

Yek ji torinên Nûh ku navê wî Azîyax bûye li heremê bi cîh bûye û navê xwe daye bajêr. Azîyax di pêvajoya dîrokî de bûye Zaxo û heta roja me hatiye.

Herwiha bajêr di dema İslamê de; wek Heseniyetul Xebûr, Hisênîkê, an jî Pêşxabûr hatiye binavkirin. Bajêr di Şerefnamê de wek Zaxo derbasdibe. Zaxo di çavkaniyên Yûnanî de jî wek Zakyarûs derbasdibe. Hecî Sidiqê nivîskarê Zaxoye li ser navê bajarê xwe wiha dibêje.

**Zaxo bêyî hemû rengînî û dewlemendiya xwe ya xwezayî, bi cîh û warên xwe yên dîrokî jî balkêş e. Bajarê ku di navbera Kurdistana Bakur û Başûr de ye di warê bazirginiyê de jî girîng e.**

**Erdnîgara rengîn**

Zaxo ji alî bakûr û rojhilat ve bi çiyayan, ji alî rojava û başûr ve jî bi çem û deştan ve hatiye pêçan. Deşta Sindî, li heremê depoya hubûbatê ye. Erdîma Zaxoyê heremeke têrave. Çemê Xebûr di nav Zaxo de û Çemên Hezîl û Dîcle ji nêzî bajêr derbas dibin.

Di salên dawîn de li çend deverên cuda yê xaka Zaxoyê neft hatiye keşifkirin. Li heremê di gelek bîran de niha petrola qalîtebilind tê derxistin.

Li gor rayedarên bajêr wê ji hatina petrola heremê beşekî ji bo pêşxistin û avadaniya bajêr bê serfkirin. Ji bilî neftê li heremê gelek madenên komirê jî tên bikaranîn.

Ev avahiya pişt Pira Delal projeya ava vexwarina bajêr e. Ev tesîsên nûjen di salên dawîn de piştî ruxandina rejima Saddam hatine çêkirine.

Di van depoyên avê de ava Çemê Xabûr tê paqijkirin û li bajêr tê belavkirin. Ava van tesîsan ji bili nawenda Zaxo li bajarokên derûdorê jî tên belavkirin.

**Pira Delal**

Her bajarekî Kurdistanê xwedî sembolekî ye. Remza Zaxoyê jî Pira Delal e. Pira Delal di nav bajêr de li ser Çemê Xabûrê hatiye danîn. Pir ji sedsala 14an maye. Di demên kevn de rêya hevreşîm ji ser vê pirê derbasdibû. Di dema xelîfên İslamî û Osmaniyan de li ser pirê qereqol û bacdar hebûne. Pir ji çaviyekî mezîn û çend çaviyên biçûk pêk tê. Kembera ser pirê ji erdê gelek bilind e. Qaîdeya pirê li ser zinnaran hatiye danîn.

Pira Delal û ya Mahabadê gelek dişibin hevûdû. Di çêkirina Pira Delal de jî hostatiyeke zirav û teknîka pêşketî ya demê hatiye bikaranîn. Pira Delal hîn jî ji bo çûnûhatina însanan tê bikaranîn. Li kêleka wê, pireke beton jî ji bo seyrûsefera seyareyan hatiye çêkirin.

Li derdora pirê li keviya çem gelek mêvanxane û park û seyrangeh hatine çêkirin. Bi taybetî êvar û şevên mehên havînê li bin Pira Delal di hinekahiya Çemê Xabûr de derbas dibe.

Sûka Zaxo wek hemû bajarên ser sînoran pirranî ji dû cûre dikkanan pêk tê. Dikkanên xizmetê û yên bazirganiyê. Di salên dawîn de li bajêr avahiyeke mezin ya bazirganiyê jî hatiye çêkirin. Zaxo ji ber ku li ser sînorê Tirkiye û Sûrî ye û nêzî deriyên sînor e, rojana bi hezaran mêvanên bajêr hene.

Helbet têrkirin û tedarikkirina pêdiviya mêvanan ji bo debara bajêr karên girîngin.

Li aliyêkî nexweşxanyên nûjen, li aliyê din otel û xaniyên giranbiha, restorantên luks Zaxoya bajarê ser sînor kiriye yek ji şarên cîhana nûjen.

**Ziravkarên bajêr**

Di gera li sûka Zaxo de em rastî



ziravkarekî jî tên. Berhemên vî ziravkarî li bajêr gelek mal û kargeh û daîreyan dixemlînin. Gelek hostayên ku ji zarokatiya xwe ve nîgarvanî û destekarî dikin, di nav qelebalixa sûkê de şekil dide dar, boyax, qaxiz û potikan.

Zaxoyî wek mileteke ehlîkeyf tên naskirin. Ev bajarê ku sirûşta wê wek perçeyeke bihûştê yê xwedî însanên aram û diltenik e. Ji ber vê taybetiya wan li gelek deverên bajêr park û seyrangeh hatine çêkirin da ku bajarî li van deveran demên xweş derbasbikin. Yek ji seyrangehên bajêr li ser girekî bilind hatiye damezirandin.

Parkên ku di nav daristanekî biçûk de hatine çêkirin li seriya bajêr e û hemû bajêr tê dîtin. Di demên kevn de dawêtên Zaxoyiyan li vê derê hatine kirin.

**Şaredariya bajêr**

Piştî serhildana azadiyê ya sala 1991an li Kurdistanê di warê pergala rêvebiriyê de hin guhertin hatine kirin. Yek ji van guhertinan xurtkirin û cudakirina karên bajarvaniyê bûye. Ji bo vê yekê ev avahiya şaredariyê hatiye çêkirin. Di sala 2001an de li Kurdistanê hilbijartinên şaredariyê hatine kirin û xizmeta bajarvaniyê wek pêşbirkê ji alî bajariyan ve hatiye tesbîtkirin.

**Perwerde li bajêr**

Li Zaxo dibistana yekem di sala 1932'an de hatiye vekirin. Niha li bajêr nêzîkî 200 dibistanan hene. Salane



70 hezar zarok û xort li bajêr diçin dibistanên cuda. Hersal herî kêm 7 hezar zarok jî dest bi dibistana serete dikin. Ji bo pêdiviya perwêrdeyê hîn jî 500 mamoste lazimin.

Li di demên dawîn de zanîngehekî jî hatiye vekirin. Ji bakûrê Kurdistanê gelek xort di zanîngeha Zaxo de duxwînin. Li aliyê din li bajêr înstîtekî teknîkî tê çêkirin. Ji bo endezer û teknîsyenên ku di karên rojanê de pêwîstî bi wan heye ew înstîtût tê çêkirin. Lêkirina avahiya înstîtûtê ku li ser erdekî mezin e, hîn jî didome. Ji bo fêrî rewşa perwerdê bibin em berê xwe didin Avahiya Rewebiriya Perwerdeya Zaxoyê.

Ji bilî perwerdeya dibistanan li bajêr çend jî baxçê zarokan hatine vekirin.

Di van baxçeyan de zarok bi zimanê Kurdî û İngîlîzî fêr dibin. Bi vî awayî pêvajoya berî dibistanê ya zarokan têrtijî derbasdibe. Pergala baxçeyê zarokan ji Brîtanya hatiye girtin. Zarokên ku ji sibehê de tên baxçe heta piştî nivro ders, fêrbûna xwendin û nîvîsandinê, têkiliya bi hevalên xwe re û lîstikê re mijûlin.

Werzîş beşeke ji pêvajoya perwerdeya zarok û xortan e. Li Zaxo girîngiyeke mezin ji bo werzîş yanê sporê tê dayin. Piştî serhildanê çend avahî û yarîgeh yanê sahayên girtî û vekirî bo fûtbol, woleybol û branşên din yên sporê hatiye çêkirin. Herwiha avahiyeke mezin tevî tesîsên xwe ku tê de hemû cûre werzîş tên kirin jî hatiye vekirin.

Li Zaxo werzîşa ku zêde balê dikşîne fûtbol e. Ji ber vê yekê li çend deverên bajêr ji alî şaredariyê ve sahayên fûtbolê hatine çêkirin ku tîpên taxan li wan deran fûtbolê dilîzin.

**Stranbêjên bajêr**

Dema behsa Zaxo tê kirin, bîranînên Mihemed Arif Cîzrawî û Eyşe Şan a dengqedîfe tê bîra mirov. Yek ji yekî re dibêje; 'Ava Xabûrê vexwariye, helbet dengê wî xweşe.' Ji ber ku dengê hemû Zaxoyiyan xweş e, Kurd bawer dikin ku ev xislet ji ava Xabûrê tê. Dema me berê xwe da Zaxo û xwest hunermendekî guhdar bikin yekser Sabah û Hecî Zaxoyî hatin tê bîra mirov. Hecî Zaxoyî li gel ûda Sebah Zaxoyî strana Zaxoka Rengîn dibêje.

**Havîngeha Banikê**

Şax û çiyayên derdora Zaxoyê ku wek newazeyên xezayî ne, ji alî gelê bajêr ve wek seyrangeh tên bikaranîn. Berbi havîngeha Banikê rê di Gundê Derkarê de derbas dibe. Derkar çend kîlometre li Bakûrê Zaxo ye. Ev gund ku yek ji nawenda eşîra Sindî ye, di têkoşîna netewî de roleke mezin leyistiye.

Havîngeha Banikê li nêzî bajêr li ser sînorê Bakûrê Kurdistanê ye. Li havîngehê di bin siya daran de ji bo mêvanan cîhên rûniştinê, hewza avê û cihokên avê hatine çêkirin. Bi taybetî rojên dawiya heftê û cejnan de herwiha di newrozan de gelê bajêr li derdorê belavdibin û demên xwe di bin siya darên van seyrangehan de derbasdikin.

Malbatên qelabalix yên bajar jî li Havîngeha Banikê ji bo rojekî xweş derbasbikin tevî zarokên xwe berê xwe didin lat û şaxên heremê. Li nezî havîngehê şikeftên Banikê cîh digrin. Li heremê gelek şikeftên nêzî hevûdû hene.

Ev şikeftên ku bi hezaran sal berê ji alî însanan ve hatine bikaranîn, heta salên dawîn jî ji şerwanên Kurd re mazûvanî kirine. Hindirên şikeftan ku ji zinnarên nermin, hatine kolan û bi vî awayî wek stareyên jiyanê hatine bikaranîn.

**Çirava Şeranîş**

Batûfa ku li ser rêya Zaxo û Amêdî ye, yek ji xopanên Zaxo ye. Batûfa jî li nêzî sînorê bakûrê Kurdistanê li ser rêya Hamîltone. Di salên dawîn de nifûsa xopanê mezin bûye û dever yek ji cîhên şên xaka Zaxo ye.

Çirawa Şeranîşê yek ji newazeyên xaka Zaxo ye. Çiraw li nêzî gundê Şeranîşê di nav lûtkeyên bilind yên çiyayên heremê de ye. Ava çiravê ji berfa helandî û kaniyên lûtkeyan tê jêrê.

Mehên havînan rojên bêhdanê gelek kes ji deverên dûr tên serdana Şeranîşê û li gel vê çiravê wextê xwe derbasdikin. Şikefta Bihêrê jî li kêleka Çirawa Şeranîşê ye. Ev şikeft jî yek ji delaliyên xerîb yên xaka Zaxoyê ye. Şikeft li nêzî lûtkeyên şaxên heremê di nav daristanan de ye. Rûbarekî zirav ji nav şikeftê diherike.

## Dîroka kevnare

Bajarê Zaxo di dîroka Kurdistanê de yek ji cîhên herî kevnare ye. Di kolanên li herema Zaxo de, ji dema Akadî, Asûrî, Medî, Babilî, Persî, Romayî û İslamî gelek berhem û şûnewar hatine dîtin.

Ji van şûnewaran li Çiyayê Bêxêr Kela Zaferanê, Kela Kaşê, Kela Ermiştê, Kela Asê, Kelaha Selmanê Sindî, Kela Hewrêzê, Keleha Dudan, Kela Şahbanî yên girîngin.

Di pêvajoya dîrokî de bajarê Zaxo çend caran hatiye xerakirin. Cara yekem di sala 855'an de di dema Asûriyan de cara dûyem di dema Celayîriyan de di sala 1041'an de hatiye xerakirin û ji nûh ve avabûye.

Li aliyê din fermandarê Yûnanî, Şenefon ku tevlî şerê navbera MadoParsan bûye, berî zayînê di salên 400'an de di Anabasîsa xwe de behsa Zaxoyê dike.

Li derdora Zaxo, ji efsana Nûh gelek îşaret hene. Di pirtûka Mario Hene yê keşe de amaje bi têkiliya Zaxo û tofana Nûh jî tê kirin.

Herem di sedsala 8an de ji alî Ereban ve û di sedsala 16'an de ji alî Osmaniyan ve hatibe dagirkirin jî, piranî ji alî mîrên Kurd ve hatiye birêvebirin.

Zaxo demek dirêj di bin hukmê Mîrnişîna Amediyê de maye. Di sala 1918'an de İngîlîzan heremê dagir kiriye. Bajêr di dema dîroka nûjen de jî rolekî girîng leyistiye.

Bi taybetî di serhildana sala 1961'an de teqeya yekem li Zaxoyê çêbûye û bajêr wek remezeke tevgera netewî ya Kurdistanê hatiye naskirin.



# Qetlîamê Comelaşî

Îhsan Tektaş

Roníyayîşê dewleta Tirkîya ra pey kurdan ser o zaf qetlîamî virazîyayê. Nê qetlîaman ra herbê Şêx Seîdî, Serewedartişê Agirî, Terteleyê Dêrsimî eşkera yê, yanî zaf ra tayn kurdî bi nê qetlîaman zanê. La qetlîamê ke nimite mendê zî zaf ê. Nînan ra yew qetlîamê Comelaşî yo. Nuşteyo ke Mehemed Akyolî qetlîamê Dêrqamî ser o nuşto ra teber mi heta nika derheqê qetlîamê Comelaşî de çîyêko nuştekî nêdîyo û nêeşnawito.

Qetlîamê Comelaşî herbê Şêx Seîdî ra pey bîyo. Eskeran comelaşicî kom kerdê û înan ra vato ma şima benê Dêrqam de nasname danê şima. Comelaşicî bi cenî û tutan ra şîyê Dêrqam. Eskeran Dêrqam de cenî û tutî carmêdan ra cîya kerdê, destê carmêdan pey ra giredayê û berdê rocawanê Dêrqamî. Uca de vîst û heşt kesî Comelaş ra, heşt zî Serde ra, pêro pîya hîris û şeş tenî kiştê. Nê merdiman ra tena mezelê Mela Hesenî (peynameyê înan Dansuk ronîyayo) nîşankerde yo. Ê bînî seba ke nas nêbîyê, pêro yew mezel de defin bîyê.




Comelaş ra Sofî Mehemed (peynameyê înan Tektaş ronîyayo) vateyê babîyê xo Hecî Hemîdî wina neql kerdî: “Bayê mi vatên, roco paşeme ez şîya Licê. Licê de kêy Qasim Efendî dostê mi bî. Hukmatê Licê înan dest de bi. Qasim Efendî mi ra va, Hemîd, nameyê dewa şima ha serê lîste de. Roco yene şima kişenê. Şo dewican ra vace wa xo bidê kişte. Ez ameya mi dewican ra va. La Elîy Mihê Simî (o wext muxtarê dewe yo, peynameyê înan Sanal ronîyayo) mi vero vecîya, va ti tomet bi dewlete kenî, ez go gereyê to bikî. Mi tay teftal bar kerd herî û ez şîya Hêni. Roco bîn hetê şanî ra mi rayîrê Comelaşî pawitên. Demêk ra pey boxazê Babêxe de cenî û tutî asayî. Destê cenîyan kaleke de bî û heme bermayne. Carmêdî nêasayne. Mi fam kerd ke kişyayê.”

Ez 17 Tebax 2014 de şiya Dêrqam. Mi Mela Ehmed (Demirer) dî. Ey cayê mezelan mi rê tarîf kerd û va: “Bayê mi (Mela Mehmud) vatên ez qetlîam ra çend serrî pey agêraya dewe. Tirmî pêro cayê xo de bî. Mi yew sela engure peyda kerde û bi sele esteyî kom kerdî. Min û Da Xece ê esteyî şitî û defin kerdî. Comelaşican ra Şêx Hesen tenê şinasîyayne. Mi bê Şêx Hesenî pêro yew mezel de defin kerdî.”

Sofî Mehemedî winî dewam kerd: “Bayê mi nameyê dewicanê ma yê ke kişyayî yew bi yew mi ra va. La nika nemeyê hemine nîno mi vîr. Ê ke enka mi vîr de yê, Îsmeîlê Mihê Simî, Hadînê Mihê Simî, Elîyê Mihê Simî (birayê yewbînan ê), Şêx Hesen, Ehmedê Huseynî, Mihê Musayî û lacê xo Kamil. Mamo Fariz û keynaya xo Hewa zî Zixir de kişyayî.”

Mehemed Akyol nuşteyê xo de qalê Da Xece keno. Da Xece Dêrqam ra ya. Fekê Hecî Emerî (peynameyê xo Dağ) ra wina nuşto: “Vengê sîlehanê ewilî carmêdê ma pê kişyay, Vengo peyîn di comelaşicî pê kiştî. (...) Di serrî ra dima ez û Mela Mehmud ma amey dewe. Çew çinî bi. (...) Firaq çinî bi. Ma yew meşke dî. Mi pê a meşke awi ardin kerdên piro, Mela Mehmudî zî duayî wendên û esteyî şitên. Ma ay esteyî pêro têhet kerdî yew mezel û defin kerdî. Dima ra wijdanê ma dest nêda, ma şî rojhilatê dewe, esteyê comelaşican zî ma top kerdî û yi zî şitî û têdir defin kerdî .”



Şahidanê nê qetlîamî ra yew zî Pîrika Xatûn a. Pîrika mi Nedret Xanime keynaya Pîrika Xatûn a. Pîrika mi Nedret Xanime fekê Pîrika Xatûne ra mi rê behsê qetlîamî kerd û va: “Daya mi vatên şefeqêk ma şî Zixir. Corê dewe de esker asîya. Ma agêray ameyî keye. Çend saetan ra pey esker kewt mîyanê dewe. Cenî, carmêd û tutî kom kerdî. Ma ra va Dêrqam de heyete ronişta, cuzdananê nufûsî newe kena. Ma şima benê cuzdanê şima newe kenê û verdenê. Ma kewtî têdima şî nizdîyê Dêrqamî. Eskeran dormare ma ra girewt. Carmêdî ma ra cîya kerdî û pê ra giredayî. Ma cenî û tutî zî kerdî zereyê yew banê dêrqamican. Demêk ra pêy vengê tifingan û tekbîran têmîyan de berz bî. Hîris û şeş carmêdê ma kişyayî. Ma cenî û tutî zî keye ra vetî berdî Hêni. Çend rocî ma Hêni de mendî. Hêni de eskeran mîyanê ma ra cenî weçînayne berdên pê gureyo pîs kerdên. Seba ke nêrê weçînayîş, cenîyan rêxe sawitên rîyê xo ra.”

Ez 17 Tebax 2014 de şiya Dêrqam. Mi Mela Ehmed (Demirer) dî. Ey cayê mezelan mi rê tarîf kerd û va: “Bayê mi (Mela Mehmud) vatên ez qetlîam ra çend serrî pey agêraya dewe. Tirmî pêro cayê xo de bî. Mi yew sela engure peyda kerde û bi sele esteyî kom kerdî. Min û Da Xece ê esteyî şitî û defin kerdî. Comelaşican ra Şêx Hesen tenê şinasîyayne. Mi bê Şêx Hesenî pêro yew mezel de defin kerdî.” Qiseyanê Mela Ehmedî ra pey mi destur waşt ez şîya gêraya mezelan. Rocawanê Dêrqamî de mi hîrê mezelî dî. Ninan ra yew mezelê Şêx Hesenî, yew ê Mela Huseynî (Dêrqam ra yo), o bîn zî mezelê komî yê comelaşican bi.



# Du you speak zazakî?

Serdar Bedîrxan

Nê demê pêvajoyê pêameyîşî de çîyo tewr muhîmo ke hetê Kurdan ra yeno waştiş ziwanê dayike de perwerde yo. Kurdî wazenî ke hetê Tirkî de Kurdkî zî bibo resmî, heme cade bêro qiseykerdiş. Seba naye zî teorîyê perwerdeyê zafziwankî ser ro fikr û meqaleyî, açarnayîşî înternet de benî vila. Tabî Kurdî perwerdeyê zafziwankî qandê xo wazanî, neke vanî wa Tirkî Kurdkî bimusî.

Helbet, yew ra vêşêr ziwano resmî rê, yanî perwerdeyê zafziwankî rê zî yew cuya zafziwankî lazim a, yanî her kes gerek cuya xoya rojane de ziwanê xoyê dayike qisey bikero û yewbînan ra fam bikero. Seba ke pratîk de no waştiş ca bêro beledîyeyê Kurdan xizmetvînayîşê beledîya de zafziwanîye xo rê kerdo hedef. Ceribnenî, ke ziwanê kurdkî cuya içtîmayî de aktuel bibo. Hetta tayn îdaalîstî şar mîyan de zî tena Kurdkî qisey kenî. No çîyêko weş o, hol kenî, ganî wina zî bibo. Labelê, pratîk de tay problemî vejînî meydan.

**1-** Vanî qey her kes Kurd o

**2-** Seke Kurdî pêro Kurdkî zanî

**3-** Problemo tewr muhîmo sereke; lehçeya Kirdaskî xorê bingeh gênî, vanî qey her Kurd Kirdaskî zano, eke nêzano zî gerek bander bo

4- Zafê xebatkarê beledîyayî bi xo zî Kurdkî nêzanî




5- İlanî, vilavokî û nuşteyê ke ser beran de eleqnayeyî heme Kirdaskî yî

Mesela hemwelatî dekweno zere wazeno ziwanê xo dir qisey bikero. Ti ewnînî karmend nêzano, yan karmend Kurdkî “xeyrameyîşêk” dano, na ray hemwelatî Kurdkî nêzano. Kirmanc vajo “ma bi xeyr” û dekewo zere to dî memur desinde va “Ez Zazakî” nizanim.

Demey embazêk mi va: “Heyran ez Kirdaskî nêzana. Qey nê Kirdasî, seke her kes kirdas bo, rayîr de mi edilnenî Kirdaskî mi ra adres persenî.”

Mi zî va: “Ez zî rastê nê tewir merdiman yena. La ez cewabê înan Kirmanckî dana û qet yew problem zî nêvejeyo. Çunke, eke fam kerd xoma meqsedê xo resenî. Eke fam nêkerd, ma her di zî Tirkkî qisey kenî û mesela hal bena.”

Feqet no problem gerek orte ra wedarîyo, lê senî? Ma vajî, yew şaristanê ewropa de, ke tede 3-4 ziwanê resmî bibî, hemwelatîyê ucayî yewbînan de senî qisey kenî? Eke hemwelatî tek yew ziwan bizanbo çitur têgeyreno? Helbet, eger tena Îngîlizkî bizanbo, verê destpêkerdişê go bipersî, “Do you know english?” Eke Almankî hîna hol bizanbo go sifte wajo: “Können Sie Deutsch? Eke tercîhî ey Swêdkî ser ro bo vere verkan go vano:“Vet du tyska?”

Bi no hewa hem merdimo ke vera kê de ro ey rê emro waqî nêbeno, zerra ey nêmanena, hem zî ziwanî cayê xo gênî. Coke ra, ma Kurdî zî, eke ma wazenî yew dezge, ca yan zî kesî dir ziwanê xo qisey bikerî, “selamûn eleykûm-eleykûm selam”, “roj baş-roj baş”, “günaydın-günaydın”, “ma bi xeyr – xeyr amey selamet” ra pey, verê ke ma dest bi qalîkerdişî bikerî, gerek ma bipersî “Ti Zazakî zanî/a”, “Tu Kurmancî dizanî”, cewabê xo bigêrî aybi gore hereket bikerî. No tewir hem gureyê ma asan beno hem zî her kes ziwanê xoyê dayike de firsendê qalîkerdişî vîneno. Encax bi no hawa vernîya cuya zafziwanîye bena a.

## Neweşxaneyanê Diyarbekirî

# Qursê kurdkî temam bi

Nêweşxaneyê dewlete yê Dîyarbekirî de kursê kurdkî (kirdkî û kurmanckî) ke aşma adare ra nat dewam kenê, temam bîyî.

Dewreyê yewin de kursê kirdkî Nêweşxaneyê Tutan û Nêweşxaneyê Cigêrayîşî de, kursê kurmanckî Nêweşxaneyê Doxumî de dewam kerd.

Dewreyê diyin de, na rey kursê kurmanckî Nêweşxaneyê Tutan û Nêweşxaneyê Cigêrayîşî de, kursê kirdkî Nêweşxaneyê Doxumî de dewam kerd. Her dewreyê kursî di aşmî, pêro pîya prosesê çar aşman de kursî dewam kerd. Her hîrê nêweşxaneyan de se ra vêşêr kursîyerî beşdar bîyî. Mîyanê kursîyeran de doktorî, hemşîreyî, îdarekarê nêweşxaneyan, xedeme û personelê bînî yê sey laborant, terapîst û teknîkerê waranê cîya-cîyayan de estbî. Kursîyeran ra çend kesî bi eslê xo tirk bî la ê bînî heme kurd (kird û kurmanc) bî.

Zafê kursîyeran beşdarê kursê her di lehçeyanê kurdkî bîyî, la qismêk zî tena beşdarê kursê yew lehçe bîyî. Kursê kirdkî edîtorê rojnameyê ma Roşan Lezgînî day, kursê kurmanckî zî mamosta Serfiraz Köymenî da.

Peynîya kursî de seba kursîyeran sertîfîkayî ameyî dayîş, seba dersdaran zî hetê “Diyarbakır Kamu Hastaneleri Birliği” ra plaketî ameyî dayîş.



# Ezdî ji Şengalê dadikevin



Kurdên êzidî ku di dîroka xwe de 72 caran rastî qetlîaman hatine, careke din di rêya mirin û mayînê de ne. Piştî êrişên DAÎŞ'ê ya li hember Şengalê, malê û gundên êzidiyan talankirin û êzidî duçarî koçê bûn û xwe spartin Çiyayê Şengalê. Ji destpêka êrişan vir ve bi sedan êzidî hatin kuştin, bi sedan jin û zarok hatin dîlgirtin û li gor nûçeyan bi hezaran êzidî jî hatin kuştin. Di heman rojan de hêzên kurdan ku ji PKK, Pêşmerge û YPG'ê pêk tên bi hevkarî xwe gîhandin hewara êzidiyan û DAÎŞ ji Şengal û derdora wê derxistin. Di navbera Şengal û Rojava de korîdorek ewlehiyê hat avakirin û li gor agahiyan nêzî 100 hezar êzidî derbasî wir bûn. Herwekî din welatiyên êzidî ku pasaportên wan hene jî derbasî Kurdistana Bakûr bûn. Li Silopya, Êlih û Mêrdînê wargeh bo wan hatin amadekirin û hin malbat jî li cem malbatên kurdan têne hewandin.

Piştî ku di 2'yê tebaxê de Şengal a navçeya Mûsilê ket destê DAÎŞ'ê, rêwîtiya êzdiyên bi mirinê ve rû bi rû man ji ji Kurdistane destpêkir. Ji bo êzdiyên ku ji ber zilma DAÎŞ'ê revîn û xwe sipartin Çiyayê Şengalê tenê rêyeke xilasbûnê ya dirêjiya wê 75 kîlomêtro heye.

Geliyê Kerzeyê rêya derketinê ye, mirov heta ji serê çiya digihêje gelî qûş li mirovan diqete. Êzdiyên ku li gelî dicivin kom bi kom derdikevin rê. Herwiha li cihên bilind ê gelî hêzên Yekîtiya Parastina Gel (YPG) nobedariyê dikin û êzdî heta digihêjin gelî wan ji êrîşên DAÎŞ'ê diparêzin. Lewra hêzên DAÎŞ'ê jî li nêzî gelî ji bo êrîşê kozik vedane. Lê êzdî bi saya rêya bi ewle û hêzên YPGyê tên parastin.

Carinan li hin cihên rêya biewle, di navbera mîlîtanên DAÎŞ, pêşmerge û hêzên YPG'yê de şerên dijwar diqewimin. Di êrîşên ku DAÎŞ'ê bi topên hawanê dike de hin kes dimrin û hin jî birîndar dibin. Kesên ku sax digihêjin Geliyê Kerzeyê, ji vir jî ber bi rêdera biewle ya gelî ve dimeşin. Meşa ku ji ser axa Iraqê dest pê dike nêzî 5 saetan didome. Lê belê ev rêwîtî ji bo êzdiyên ku bi rojan tî û birçî man û nikarin bimeşin bi zor û zehmet e.

Êzdiyên nexweş û lawaz di rêya ku dirêjiya wê 100 kîlomêtro ye de dimeşin, ji ber germa havînê ya ku pileya wê 50 ye ji xwe diçin û dikevin. Kesên ku di rê de ji xwe diçin û dikevin nikarin bimeşin li ser rê dimînin, yên ku dikarin bimeşin jî ji bo canê xwe xilas bikin di nav tirs û xofê de dimeşin.

### "Gelo av tune ye?"

Êzdiyên ku ji welatê xwe derbasî Rojava dibin, li ser rê rastî kî/kê bên di serî de vê dipirsin "gelo av heye?" Pişt re yên ku hêza wan hebe û karibin biaxivin dest pê dikin serboriya xwe vedibêjin: "Gelo kesekî ku li benda me be tuneye? Wesayîtên ku em ê lê siwar bin li ku derê ne? Ji bo Xwedê me xilas bikin! Qurtek av bidin me." Axaftinên wan dilê mirov disojînin... Êzdî îdia dikin ku ev duyemîn komkujiya Helebçeyê ye. Ji ber vê gotinên sitrana Şivan Perwer a bi navê "Helebçeyê" berz dikin.

Êzdî piştî meşa du rojan digihêjin herêma ku wesayît lê ne. Penaberên ku li vir wesayitan siwar dibin û tînin herêma Rîmelanê. Li ber deriyê Rîmelayê êzdî tên pêşwazîkirin, pêdiviyên wan ên însanî tên bicihanîn û êzdiyan ji vir jî tînin Qada Newrozê ya ku Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) damezirand.

Xidir Şeykoyê ku got bi zorê can û malbata xwe xilas kiriye wiha axivî: "Zarokên ku ji tîna û birçîbûna mirin hebûn. Em bi rojan sekinîn. Pişt re rêwîtiyeke dijwar dest pê kir. Gelek kes di rê de man. Li me xwedî derneketin." Heydo Şakirê ku xwe û dergûşa xwe ya 10 rojî bi zorê xilas kir wiha got: "Di wan rojên dijwar de hin jin welidîn, gelek jin û bebik mirin."

### Di qaseya kamyonê hawara "avê"

Êzdiyek di qaseya komyonê de qêrîn dikir û digot "hawar, hawar..." Pişt re yekî digot "germ e, havîn e. Av, av..." Mirovên din di nav van hewar û axaftinan de digiriyan. Di seranserê rêwîtiyê de gelek bûyer û dîmenên wiha dilsoj derdiketin holê.

### Kurdên misilman sûcdar in li hember êzidiyan

Şêwirmendê Komeleya Gelin ku Gef lê tên Xwerin Kamal Sîdo di derbarê mijarê de wiha got: Me dizanî ku wê DAÎŞ êrişî êzidiyan bike. Me li ser mijarê nivîs jî nivîsin. Hukumeta Kurdistanê jî ew mijar dizanî. Divê hukumetê tedbîrên ewlehiyê bistendana. Divê êzidiyan amadekariyên xwe bikirana. Heya divê hemû hêzên kurd li hember vê rewşê amadekariyên xwe di pêşiyê de kiribana. Kurdên misilman sûcdar in li hember êzidiyan. Tiştê ku ji me tê xwestin alikariya bi êzidiyan re ye.



DAÎŞ niha malên êzidiyan dişewitîne, goristanên wan hildiweşîne. Roj roja yekitiya kurdan e. Ne dema ku hêzên kurd bi hevkevin e. Li ser me hemûşan xofeke mezin asê ye. Ew tir ji Efrînê bigire heta Mendelî'yê jî asê ye. Divê em hemû bi hev re têbikoşin. Dema ku hemû hêzên kurd bi hev re bimeşin tenê Şengal ne wê hemû Kurdistan azad bibe.

### Em spasdar in bo hêzên Kurd

Şêxê êzidiyan Şêx Evdo jî di derbarê mijarê de pirsên me bersivandin. Evdo jî ev gotin anîn ziman: Millete me gelek deme bê av, bê xwarin bê derfet e. Em dixwazin kesên xwedî wijdan û xwedî namûs li vî gelî xwedî derkevin. Ew milletekî herî kevnar e. Bi hezaran salane ew tarîxa me, ola me heye. Em her tim alîgirê insaniyetiyê ne. Em DAÎŞ û kesên ku alikariya wan dikin şermezar dikin. Em dixwazin birayên me yên xwedî şeref, kurd, tirk, çi millet dibe bila bibe em ji wan alikariyê dixwazin da ku millete me azad bikin. Li gorî agahiyên nû ku gihiştine destê me Şengal niha hatiye azadkirin. Gellek kes hîn jî li çiya ne. Bi alikariya gelê me yê xwedî wijdan piraniya êzidiyan hatine xilaskirin. Li niha di hundirê şikeftan de gelek kes hene. Em spasiya xwe pêşkêşî hêzên kurd dikin.



Wekî din Emerîka jî hinek alîkarî gihand gelê me. Xwarin, av û hinek tiştê din niha digîhîje wan. Ji sedî 90'î xwarin û av giihştiyê. Em dikarin bibêjin êdî azad e lêgerîn meyî wir lê bi temamî ne.

Di derbarê mirî, wendahî û dîlgirityan de reqemeke zelal nîn e di destê me de. Dora 8-9 kes wendaye, hatine kuştin an jî kes hîn negihiştiye wan. Gelek jin û zarok kirine bin dest û bin îşkenceyan. Tecawûz û her kiryarên li derveyî insaniyetiyê li wan hatiye kirin û hîn jî didome. Kuştin li ser çavan lê kiryarên xirab ne tiştekî hêsan e. Em 72 caran rastî kuştin û mirinê hatine. Lê me qed dest ji parastina ax û çanda xwe bernadeye. Û em niha jî dest jê bernadin. Emê dîsa vegerin cihê xwe. Dewletên cûda cûda alikariya me dikin. Dîsa bi alikariya wan em di baweriya ku gelê me bi temamî xelasbe ye. Banga me bo her millet û herkesî ye. Divê ew destê xwe dirêjî êzidiyan bikin. Ji ber ku êzidî alîgirê aştiyê ne. Me heta niha tu nebaşî li tu kesî nekiriye. Ew kesên ku niha



neheqiyê li me dikin nayên afûkirin û ew tişt wê heta mirinê di dilê me de be û emê bersiva xwe bidin.

Niha gelek kesên me yên êzidî bi berpirsyarên Ewropa'yî re di têkiliyan de ne. Li Elmanya, Fransa'yê xebatên me didomin. Bo ku alikariya me bikin. Daxwaziyeke ku êzidî li Elmanya bên bicîkirin heye. Lê hîn tu biryar nehatiye girtin. Lê em naxwazin ku êzidî bi tevahî welatê xwi biterikînin. Ji sedî 90'î êzidiyan wiha difikirin.

### Berbuharî: 75 hezar koçberên Şingalê vegeriyane Başûrê Kurdistnê

Rêvebirê xala sînorî ya Pêşxabûrê li aliyê Başûrê Kurdistanê Şewket Berbuharî ji da zanîn ku pêvajoya vegera koçberan ji Rojavayê Kurdistanê bê rawestan berdewam e. Berbuharî aşkere kir ku, 63 hezar koçber di xala sînorî re derbasî Başûrê Kurdistanê bûne û diyar kir ku li gor vê pêvajoyê heta êvara îro, sêşemê, dibe ku hejmar koçberên ku derbasî Başûrê Kurdistanê dibin bighêje 75 hezar koçber.

### Hêzên Şengalê: Pêwîstî bi alîkariya xwarin û derman heye

Fermandariy Hevpar A Hêzên Kurdistanî jî bi daxuyaniyekê da xuyakirin ku Şengaliyan, li dijî êrîşên xwînxwarî yên DAÎŞ'ê ji bo parastina Çiyayê Şengalê bi dehan kes hatine kuştin û destnîşan kir ku ji bo gund ji DAIŞ'ê bên rizgarkirin, wan dest bi operasyonê kirine.

Fermandariyê ragihand ku bi deh hezaran Şengalî, ji aliyê Hêzên Kurdistanî ve ji qirkirinê hatine rizgarkirin û da zanîn ku ji bo şêniyên herêmê bi awayekî ewle derbasî Kantona Cizîrê ya Rojava bê kirin xebat hatine meşandin û ev hewldanên wan hînê dewam dikin.Hat destnîşankirin ku alîkariyên heta niha bi helîkopteran hatine kirin, têrê nakin. Di dawiya daxuyaniyê de wiha hat gotin: "Banga me li hêzên alîkariyê yên navneteweyî û mûxatabên mijarê ye: Bi lezgînî pêwîstî bi xwarin, vexwarin û dermên heye.

Bi taybetî divê alîkarî ji herêmên di bin kontrola Hêzên Kurdistanî de ne, bê şandin. Em ji saziyên tenduristiyê ji dixwazin ku alîkariya tibî û xebatkarên tenduristiyê bişînin vê derê. Ji bo pirsgirêk mezin nebe, pêwîstî bi vê heye."



## Nûnerên êzidiyan bi alîkarê Serokwezîra Elman re civiyan

Di vê navberê de Nûnerên Saziyên Êzidiyan ên li Elmanyayê, bi alîkarê Serokwezîra Elmanyayê û lîderê hevparê hikûmeta koalîsyonê SPD Sigmund Gabriel re hevdîtinê dikin. Nûnerên Êzidiyan wê di hevdîtinê e balê bikşînin ser êrîşên DAÎŞ'ê û drama mirovahiyê ya li Şengalê. Hevdîtinê li avahiya navenda giştî ya SPD Willy Brandet Haus'ê saet di 10'an de destpê kir û tê payîn ku Di hevdîtinê de tevî Hevserokê Federasyona Komeleyên Êzidiyan li Elmanyayê nûnerên gelek saziyên Êzidiyan amade ye. Di hevdîtinê de tevî alîkarê Serokwezîr, rayedarên payebilind ên Wezareta Karên Derve jî amade ne. Nûnerên Saziyên Êzidiyan wê piştî hevdîtinê saet di 11.00 de civîneke hevpar a çapemeniyê lidar bixin.

# DAÎŞ ji êsîrên êzidî fidye dixwaze

**Gurgîn Sipan**

Piştî êrîşên DAÎŞ'ê yên Şengal û derdora wê bi hezaran êzidî ketin rêyên koçberiyê. Bi sedan jin, zarok û wêlatiyên êzidî hatin kuştin û bi deh hezeran êzidî jî li çiyayên Şengalê di mercin ku wan ber bi mirinê dibin de dijîn. Piştî ku hêzên kurd gihiştin hewara wan korodîrekê ewle hate vekirin û zêdetirî 20 hezar êzidî derbaî Rojova bûn. Herwekîdin bi sedan êzidî jî di destê DAÎŞ'ê de ne. Li gor agahiyan DAÎŞ'ê gelek ji wan kuştine û ji bo yên mayî jî fidye dixwaze.

Ji êzidiyên ku li ber DAÎŞ'ê reviyan hinekan xwe spartin sînorê Kurdistana Bakûr û li Silopya, Elih û Mêrdînê hatin bi cîkirin. Welatiyê êzidî ê bi navaê Feysel Ecil ku 18 roja di destê DAÎŞ'ê de êsîr maye û pişt re bi dayîna fidye serbest hatiye berdan, diyarkir ku bi sedan êzidî li benda dayîna fidye ne. Feysel got, heke fidye nayê dayîn DAÎŞ dê wan bikuje.

Ji êzidiyên ku bi çiyayên Şengalê ve hilkişiyan yên ku pasaportên wan hene di deriyê Xabûr re derbasî Tirkiye bûn. Ji van 350 kes li qampa Silopya hatin bi cîkirin. Gelek kesên din jî li Êlih û Midyadê ji aliyê şaredariyan ve têne hewandin. Feysel ku li Silopya di qampê de hatibû bi cîkirin û pişt re jî ew û malbata xwe li maleke kurd têne hewandin dîtbariyên xwe ji me re vegot. Li gor agahiyên Feysel DAÎŞ ji bo berdana her kesekî êzidî 120 milyon pere dixwaze.

Feysel ku bavê 3 zaroka ne niha li navenda Şirnexê mevanê malekê ye. Piştî ku ji Şengalê direvin ji aliyê DAÎŞ'ê ve dîl tê girtin. Di heman demê de gelek kes tên kuştin û Feysel bi komeke din ve dibin Sûriye. 18 roja li wir tên girtin û piştî ku fidyeya xwe berhev dike DAÎŞ wî serbest berdide.

Feysel tiştên ku li serê wî qewimîne wiha anîn ziman, "Gelek hevalên me li ber çavên me dan ber guleyan. Erebên sunne bêyî fidye serbest berdan lê em bernedan. Kurdekî Hewlêrî ku endamê wan bû em deşîfre kirin. Got ew êzidî ne û divê bêne kuştin. Pişt re hin hevalên me yên birîndar jî dan ber guleyan û kuştin. Hevalekî lal û ker ku bavê 5 zarokan bû jî bi awayekî howane kuştin. Ew razandin û serê erebeyek di ser serê wî re birêxistin û bi wî awayî kuştin. Piştî 18 rojan em derxistin dadgehêkê. Gotin heke herkes 120 milyon lira bide emê we serbest berdin. Bi riya telefonê em bi malbatên me re xistin têkiliyê. Min ji hevsera xwe re meşe got. Wê jî xaniyê me, erebe û zêrên me firotin û ji xwîşka min a li Ewropa'yê re jî xeber şand. Ew jî 100 milyon lira hat sînor. Min pere dan wan û pişt re ez û 23 êzidiyên din serbest berdan. 18 roja her seat em gefên kuştinê ji me dixwarin."

Feysel destnîşankir ku îşkence li wan hatiye kirin û her seat bi serî jêkirinê hatine texdîtkirin. Feysel wiha dirêjî da axaftina xwe, "Em di tirs û xofek giran de hatin girtin. Ji wê xofê xwarina ku didan me jî me nedixwar. Her tim digotin xwarina xwe bixwin ku em serê we jêkin. Her tim lêdan hebû. ."

Hevsera Feysel Wehda Ecil jî hin tişt lê zêdekirin û wiha got, "Dema ku ez li Feysel geriyam xofa mirin û kuştinê bû. Telefon lê ket. Yekî vekir û got ez endamê DAÎŞê me. Ez li ber geriyam û min kir hewar. Pişt re min telefon da xwîşka Feysel. Wê ji wan xwest ku Feysel bibeşînin. Got min birayên xwe wenda kirine û qe nebe Feysel berdin. Pişt re telefon qut bû. Piştî 18 rojan Feysel li me geriya û xwest ku em fidye amade bikin. Dû re me pere berhevkirin û xwîşka wî bir da wan û Feysel hat. Tiştên ku têne serê êzidiyan kesek nizane. Hemû dinya bêdenge û êzidî bi hovane têne kuştin.

## Salîh Muslîm:

# Emê li hember daxwaza serxwebûna Rojava rêzdar bin

Bese Zîn

Salih Muslîm'ê ku me pê re li ser; piştî êrîşên DAIŞ'ê hevsengiyên guherbar ên rojhelata navîn, ji bo kurdan rewşên nû yên digeşin û rewşa Rojaya ya nû hevpeyvîn pêk anî wiha dibêje: Ger ku gelê Rojava daxwaza serxwebûnê bike em ê hurmetê bidine vê daxwazê.

Salih Muslîm tîne ziman ku ew wek PYD ji destpêkê ve ji bo Sûriye'yek demokratîk têkoşiyane, ew ji daxwaza Rêveberiya Herêmî ya Kurdistan a serxwebûnê re hurmetdar in û destnîşan dike ku DAIŞ ji bo gelemperiya Rojhelata Navîn xeteriyeke mezin e. Salih Muslîm li ser mijarên wek; DAIŞ, Rojava, Serxwebûn, Rojhelata navîn, Pêwendiyên bi Tirkiye re pirsên rojnameya me birsivand.

Salih Muslîm di axavtina xwe de bal kişand ser van xalan:



* Hêzên çekdar ên partiyên Kurd ên din tune ne. Bi hevre dixebitin û bi heve re biryaran digirin. Nemaze PDK'ya Sûriye ji bilî reşkirina me tu tiştek nake. Li her bajarî ofîsên wan hene. Konferansa xwe ya li Qamişlo bi parastina YPG û asayîşê pêk anîn. Ji ber vê yekê ez tênagihîjim ew çawa qala pêkutiyê dikin. Bi kurtasî ez wiha bêjim: Kesên ku bixwazin şeref û namûsa xwe biparêzin, pêwîst nîne ku ji tu kesan destûrê bixwazin. Ev sedemên pûç in. Ger ku niyeta we ya parastinê tunebe pêkutiyan nekin hincet û nebêjin 'Em dixwazin wiha bikin lê pêşî li me digirin. YPG hêza hemûyan e. Lê hin partî, bi taybetî di babeta PDK'yê de dixwazin xwe bidin pêş.

* Biryara yekhêziya vê derê biryara Konseya Kurd a Bilind bû. Çawa ku Ereb û Sûriyeyî di nav vê hêzê de hebin ew jî dikarin beşdar bibin, lewre ev hêzeke neteweyî ye û ne girêdayî tu partiyekî ye. Carcaran derdikevin dibêjin ev hêza PYD'yê ye lê na, ez hêzeke neteweyî ye. Carnan gel bertek nîşan dide, wek nimûne di mijara bendê de gel hêrs bû. Hin kesan hin êrîşan pêk anîn û bêguman ev jî ne tiştek baş e, lê ev êrîş ne êrîşên plankirî bûn. Lê belê ger ku gilî bêne kirin, wê lêpirsîn pê destpêkirin, çi pêwîst be ew ê bê kirin û sûcdar bêne cezakirin. Lê tu kesî gilî nekir. Karên wiha bi girî nameşin, li wê derê rêveberiyek heye, Ereb, Suryanî, Kurd û Sûriyeyî hene. Hemûyan bi hev re rêveberiyek damezirandine. Lê belê ger ku hin kes bixwazin aloziyê derxin an jî di valahiyê de bijîn ew ê nîqaş bêne kirin. Li vê derê sîstemek hatiye avakirin û divê em xwe li vê sîstemê bigoncivînin. Ew jî wek partiyên din dikarin daxwaz bikin û beşdar bibin. Ger ku bawer dikin neheqî li wan bûye bila li dadgehê gilî bikin. Lê ew ne dadgehê pesend dikin û ne asayîşê pesend dikin, li pêş çapemeniyê digirîn û dibêjin êrîşî me kirin. Çima naçin giliyê xwe ji dadgehê an jî ji asayîşê re nakin. Bêguman tu tiştekî nakin, tenê diqîrin. Ger bawer dikin ku êrîş li wan hatiye kirin, bila daxwaza parastinê bikin, em dikarin bi parasvanan ew biparêzin jî. Lê tu daxwazî û serlêdanan nakin. Tenê diqîrin.

* Em niha di navbera du vebijêrkan de ne. Yan wê hêzeke netewî ku ji aliyê herkesî vê bê qebûlkirin yan jî heke ku hêzek an jî partiyek bi israr bixwaze bi serê xwe di nava xebatankeve dê pêvçûn derkevin di navbera kurdan de. Ev rastiyek e. Hêzên navnetewî teqez wê din ava xebateke wiha de bin. Hin hêzên din ava medyaya cîhanê de hebûna kurdan napejirînin û her tim zimanê êrîşkar bikar tînin. El Cezîre û hin saziyên çapameniya ereban piştgiriya van tiştan dikin.

* Niha her tim îddiaya ku di navbera me û rejîma Baas de têkilî hene tên rojevê. Me bi dehan caran got; bi rejîmê re tû pêvendî û danûstandinên me nîn in. Meseleya kanton û pêşketina di warê ewlehiyê de me ji bo ku xwe biparêzin, destkeftiyên Rojava bipaêzên em dimeşînin. Ji xwe ji destpêkê vir ve rejîm vê yekê qebûl nake. Derdorên ku rastiya kurdan û hebûna wan hîn jî napejirînin hene. Yên ku ji statûya kurdan ditirsin hene. Rejîm bixwe jî dibê je ez ne alîgirê parçebûna Sûriye'yê me. Ez ne di baweriya ku rejîm bigihîje hêza xwe ya berê de me. Em rewşa reîjîmê ya berê ji binî ve qebûl nakin û napejirînin. Yan wê rejîm veguhize demokrasiyê an jî ew rêvebirî divê biçe û yeke nû bê. Bi rêvebiriya heyî demokrasî nayê.

**Ger ku ji gelê me yê Rojava daxwaza serxwebûnê bê emê li hember wê rêzdarbin.**

Em parçeyekî ji Sûriye ne. Ji ber ku derfetên demokratbûnê nîn bûn me çareseriya xwe xist rojevê. Lê heta ku ew rewş neguhire emê berxwe bidin. Ku rejîm bigîhije hêza xwe ya berê jî wê şoreşa Rojava bidome.

* Di warê têkiliyên me yên bi Tirkiye re jî; em her tim destê xwe yê dostaniyê dirjî wan dikin. Hîn jî rewş wiha ye. Di navbera me de sînorekî pir dirêj heye. Em êdî kedine nava hev. Em dixwazin ku têkiliyên me bi Tirkiye re baştir û xurttir bibin. Daxwazên me jî hene û hin daxwazên wan jî hene. Li Enqere ji me re gotin çima hûn di nava koalîsyonê de cîh nagirin. Me jî got ku heke koalisyon wek kurd me nas bike emê cihê xwe di nava wan de bigirin. Lê pêşketineke wisa çênebû. Em jî dixwazin ku deriyên ser sînor her tim vekirîbin û tîcaret bê kirin. Lê ew jî statû ya kurdan a netewî qebûl nakin û niha rewş li vê qonaxê ye.

* Ji bo mijara serxwebûna Kurdistanê ez dikarim van bêjim. Helbet Başûr jî parçeyek ji Kurdistanê ye. Lê ne Kurdistan bixwe ye. Li her parçeyekî şert û mercên cûda hene. Wê gelê wir biryara xwe bixwe bide û li her parçeyên din jî herkes wê li hember wê rêzdar be. Divê wisa be. Di heman demê de divê li hember vebijêrka Rojava jî her kes rêzdar be. Dibe ku bandora serxwebûnê bi avayî li ser Rojava jî bibe helbet.

* Helbet ku li Rojava jî gelê me biryara serxwebûnê bistîne emê li hember wê jî rêzdar bin. Heya niha daxwaziyeke wisa derneketiye holê. Me vebijêrka ku em bi gelên din re di bin banekê de bijîn hilbijartiye. Helbet di pêşerojê de dibe ku şertên pêşerojê cûdabin û li gor vê daxwazên gel jî bêne guhertin. Wê demê em jî dê biryara xwe li gor daxwazên gel bidin.

* Raste niha şans û derfeteke dîrokî liber kurda ye. Lê ew şans beriya niha jî çend caran derket. Yekemin şerê cîhanê, duyemîn şerê cîhanê û di 1950'î de jî ew şans hebû. Lê ew fersend baş bikar nehatin. Heke ku fersenda niha baş bi kar bê wê bikaribin bigîhijîn rewşeke ku bi demokrasiyê xemilî. Em baş bikaranînê wek serxwebûnê bi nav nakin. Ji ber ku em ji tecrûbeyên berê dizanin dewleteke demokrat baştir e ji dewleteke netewî. Dewleteke netewperest tiştekî şaş e. Ji bo vê divê xebat hebin. Piştî Şoreşa Fransî em dibînin ku sînorên netewedewletan bi xwînê hatine xêzkirin. Divê em kurd li gor şertên Rojhilata Navîn biryara xwe bidin. Çima Rojhilateke Navîn ya konfederal çênebe. Dibe ku ew niha xewnek be lê ne tiştekî ku pêk neyê ye.

* Beriya şoreşa Rojava hin karmendan destheqê xwe ji dewletê distend. Lê ew nayê wateya ku girêdayî rejîmê ne. Dewlet cûda ye, rejîm cûda ye. Hin endamên Arteşa Azad ya Sûriye jî destheqê xwe ji dewletê diştendin. Ew nayê girêdana bi rejîmê re. Bingeha me ya aborî hîn pêknehatiye lê em di nava hewldanan de ne.

* Heya niha bi rejîmê re qet hevdîtin û civînên me pêk nehatine. Tu pewendiyên me nîn in. Helbet ku daxwaziyek bi vî rengî bê emê kêfxwex bibin. Mesele ku di dema hilbijartina serokkomariyê de bo kurdan hin gav hatibûna avêtin, dibû ku me destûr bida ku li hin dewerên Rojava jî sindoq bihatana tanîn. Lê heya niha qet nêzikahiyeke rêjîmê ya nerm û







# Sînorên bê milet

Vicken Cheterian

Rojekî hevkarekî min li Beyrûtê, amaje bi rêkeftinên nihênî yên Fransa-Brîtanya yê ku di sala 1916ê de nexşeya rojhilata navîn xêz kiribûn, ji min pirsî: "Gelo ewropa amadekariya rêkeftinên nû yên Sykes-Picot ê ye?". Di pirsa wî de du mijar hebûn: helweşîna sîstema berê ya rojhilata navîn û kapasîte û îradeya ewropayê ji bo pêkanîna sîstemeke sîyasî ya nû di herêmê de.

Nexşeya heyî ya rojhilata navîn bandoreke sergêjker heye. Sînorên wan herêman ku terorîstên Îraq, Sûriye, Lubnan, Tirkiye, Yemen û welatên din têde bicîh bûne, niha ne rastin û rastiyên heyî venabêje. Bi wî awayî, ji sala 2012ê û pêde sînorê di navbera Sûriyê û Îraqê de nemane.

Li aliyê Îraqê, herêmeke zêde ya parêzgeha El-Enbar û Felûceyê di bin kontrola grûba Dewleta Îslamî ya Şam û Îraqê (DAÎŞ) de ye ku herî dawî Mûsil jî lê zêde kir.

Li aliyê din, wate di dilê bakurê Sûriyê de (DAÎŞ) li Ebû Kemal, Riqe û Helebê jî ye. Tiştek li pêşiya hêzên wê grûbê di nava sînorê navnetewî yên beriya niha de nîne.

Li sînorê Sûriye-Lubnanê jî heman rewşe. Şorişiyên Sûriyê heta cardin wergirtina Buqelemûn û Kirakê ji aliyê rejîma Sûriyê ve, Lubnanê weke bingeha amadekariyan bikar dianîn û xwedî azadiyeke baş a hat û çûyê bûn.

Li aliyê din dema ku wefadarên rejîma Sûriyê hin herêm ji dest dabûn, çekdarên Hizbulaha Lubnanê bi awayekî berfireh di şerê Qesîrê de beşdar bûn. Li wir jî hebûna nexşeyên sînoran nekarî pêşiya çekdaran bigre. Lê di rastiyê de sînorên di navbera Sûriye-Lubnanê ji sala 1976 ê, dema ku şerê navxweyî Lubnan dagirtibû û Demişqê hêzên xwe şandibûne wî welatî nemane.

Li sînorên başûrê Tirkiyê hêzên şoreşî yên Sûriyê bê asteng di hat û çûyê dane û birîndarên xwe dişînin Antakiya yan Gazî Antepê. Lê tişta ku Ankara aciz kiriye hebûn û derketina hêzên Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) ya girêdayî PKK li piraniya herêmên Kurdan li bakurê Sûriyê ne.

Piştî êrişên bênavber yên Kurdan bo nava cergê Tirkiyê, di January 2013ê de herdu aliyan agirbesteke çaverê nekirî mor kirin (1). Tu tiştek li herdu aliyên sînoran û bi hêz bûna Kurdan yan ava kirina welatekî bi navê Kurdistanê li herêmê, ku ji May a 2014ê bêy hikûmeta navendî ya Îraqê petrolê derdixe. Û ji dema girtina Kerkûkê ji aliyê pêşmergeyên Kurd ve, vê dewletê bîrên zengîn yên zêrê reş bidest xistie.




Bi wî awayî sînorên rojhilata navîn bi temamî nemane. ev yek ji ber lawaz bûna berdewam a hikûmetan li herêmêye ku di ji sala 1975ê û di dema şerên navxweyî yên Lubnanê de destpêkir.

Êrişa leşkerî ya Amerîka bo ser Îraqê di sala 2003ê de, rejîma Sedam û navendên Îraqê bi giştî ji nav birin. Şerê navxweyî germ û gor û berdewam zêde bû. Ji dema vekişîna hêzên Amerîkayê di Decamber a 2011ê de tu partiyekî nekarî dîsîplîneke navxweyî ava bike û hêzeke bi kêr dabimezirîne. Tevî derxistina petrolê û bi kar xistina mîlyar dolarên dahata petrolê, Îraq berdewam di nava alozî û hevraz û nişîvên siyasî de bû. (3) xwepêşandanên bê tund û tîjî di sala 2011ê de li dijî hejarî û fesadê, nîşaneya nerazîbûna xelkê bû, lê xwepêşandana sala 2013ê bi tundî hatine serkut kirin û rê li ber vegera grûbên cîhadî û dagîr kirina çend bajarên Îraqê û ji wan Mûsilê, vekir.

Sînorên navnetewî êdî nikarin pêşiya pêla penaberan jî bigrin . Hejmara penaberên Îraqî geheştiye du mîlyon û hejmara awareyên Sûrî geheştiye du mîlyon û heştsed hezar kesan. (4) (derbarê Suriyê, şeş mîlyon û nîv wate ji sedî 40 a hemû şêniyên wî welatî di nava Sûriyê de cîhên xwe guhertine). Ev veguhestinên berfireh bûye sedema dabeşbûna olî ya deveran û ji nav çûna kêmîneyan. Di sala 1914ê de ji sedî 40 a şêniyên rojhilata navîn Krîstîyan bûne. Ev hejmar îro ji sedî pênc e.

Piştî şerê îraqê, civakên qedîm yên weke "Mandin, Şabak, û Saliyas Kakayis" di nexweşî û ezabeke wisa de bûn ku tê payîn hebûna wan di bin metirsiyê daye.

Gelo ve parpar kirina rojhilata navîn, weke ya piştî şerê cîhanî yê yekem yan piştî rêkeftinnameya Sykes-Picot qewimiye?

Bi giştî, şirovekar bi temaşe kirina du gokên kirîstalê li rewşê dinêrin: mudaxileyên derekî û par par bûnên olî. Hejmareke zêde ya nivîs, lêkolîn, raport û belge cîh girtina şîe û suneyan di du bereyan dijberî hev de, yan şerê wan, yan armanca hêzên mezin ku bi têkdana aramiya herêmê dixawzin wan du bereyan bêhêz bikin û bixin bi kontrola xwe.

Di mînaka mudaxileyên derekî de mirov dikare ava bûna welatê Îsraîlê di sala 1948ê nîşan bide ku zexteke mezin li ser hikûmetên rojhilata navîn bû. Tevî wê jî, çênabe erdhejeke wiha sedemên navxweyî yên şikesta hikûmetên ereb veşêre.

"Bihara Erebî" hinek ji wan welatan, helbet bi destên navxweyî ji nav birin. Hemû pirsgşirêkên civakî-aborî yên herêmê, zêde bûna heşametê, bê îşiya ciwanan, kombûna pere di diestên hin kesan de (5) rewşa heyî ku nayê tehemul kirin, afirandiye.

Bêguman şirovekar roleke mezin jî didin lîstikvanên derekî (6).

Ev nêrîna pi reg vedigere serdema şikesta împiratoriya Osmaniyan ku sultanên wan bawer bûn hemû tişt girêdayî mudaxileya hêzên krîstiyan bû. Osmaniyan ji bo mayîna xwe bi şarezatî hevrikiya di navbera Brîtanya û Rûsiyê zêde dikirin, lê di nava xwe de jî tovê dijatiya bi welatên rojavayî û dijatiya ewropayê jî çandin, ku



encama wê ji bo şênî û hevwelatiyên krîstiyan xesareke mezin bû.

Lazime bê qebûl kirin ku împîratoriya Osmanî ji ber rêkeftina ewropayê di sedsala 19ê de karî jiyana xwe berdewam bike. Dema ku artêşa Mihemed Elî ber bi Stenbolê ve diçû, artêşên ewropî bûn ku di bin fermandariya Rûsiyê de, Osmanî ji dagîrkerên Misrî (1833-1840) rizgar kirin. Herwiha di dema şerê krîmê de jî, hêzên mezin yên rojavayî li hember Rûsan piştîvaniya Osmaniyan kirin (1853-1856).

Lazime di nava împrotariya Osmanî bi xwe li sedemên helweşîna wê bigerîn. Di sedsala 19 ê de sê guhertinên mezin ji bo modern kirina hikûmetê û guhertina hevwelatiyên Osmanî û mafdar bûna wan ji hiquqên kamil hate erê kirin: "tenzîmat" di sala 1839ê de, biryara rastvekirinan di sala 1856ê de û damezrandina selteneta bi merc ku piştî du salan hate taloq kirin di sala 1876ê de.

Şikesta wan rastvekirinan, şoreşa tirkên ciwan di sala 1908ê de û biryara Osmaniyan ji bo beşdariya di şer de li rex Elmanan, îzaheke baştir ji bo dabeş kirina împratoriya Osmanî ye, heta ji ya pilana derekî.

**Ji farsî: Dêrsim Oremar**

## Şikoyê Hesen:

# Muntehîrê helbesta kurdî!

Rawîn Sterk

Müntehîr... an jî em bi kurdî dikarin bibêjin xwekuj. Muntehîrî bi taybetî piştî şerê duyem yê cîhanê bi firehî dikeve rojeva cîhanê. Di demeke ku li hemû cîhanê rewşeke bi hilma 'payîzî' asê ye, di nava gelan de 'bêhêvîbûn' bi giranî dihilkile. Di nava nivîskar û helbestvanên cîhanê de muntehîrî wek êşek bê derman û bê çare, wek protestoyek jiyînê, wek bihêzbûnek ku karibe cîhanê ji rûçikan ve hilweşîne rûdaye. Kesên ku di jiyana xwe de tenê bi bedenê di nava mirovan de ne û rihê wan di nava êşên jiyînê de vedigewize û ji bedenê dûr e, kesên ku jiyînê wek bersûciyekê binavdikin û li hember bêedeletiya bi her awayî, êdî naxwazin li vê cîhanê bijîn. Ew kes in, muntehîr an jî xwekuj. Di nava helbestvanên cîhanê de navinên wisa hene ku dema meriv dibîhize, daxwaza ketina rêça wan diçilke mêjiyê mirov. Ji ber ku bi nivîs an jî helbestên xwe dawî li her tiştî anîne. Serkeftî û di ser pênûsên wan re pênûs kêm.. bo mînak, Vladimir Vladimiroviç Mayakovski, Attila József, Nilgün Marmara, Sylvia Plath, Sergey Vesenin, Sosyal Ekinci û Şikoyê Hesen.

**Rojekê kevir li ber lingê min kêlimî,**
**Çi qas rêwî, - got, - bi ser min de likumî,**
**Ez pekandim, gulol kirim, anîm vir,**
**Tu çi zanî, gelo sibehê tu yê li ku bî?**



### Şikoyê Hesen û bersûciya jiyînê

Şikoyê Hesen ku ji bo helbesta cîhanê hîmekî li Kurdistanê ye di 17 Hezîran a 1928'an de li Gundê Çamûşvana Biçik a bi ser Axebaran a ku niha parçeyek ji Ermenistanê tê hesibandin tê dinyayê. Di 5 saliya wî de bavê wî diçe ser dilovaniya xwe û neçar dibe berdest bibe. Hesen ji wir şûn de wek sêwiyekî li cem apê xwe Sofî û amojna xwe dimîne. Malbata Hesen wek bêşek kurdên din di 1. Şerê Cîhanê de neçarî koçê dibe û Têkor a Qersê berê xwe dide Qafqasan. Zaroktiya Hesen wek gelek rewşenbîrên kurd, Axberan a ku navçeyek êzdiyan e derbas dibe. Di sala 1948'an de li Zanîngeha Erîvanê di Fakûlte ya Zanistên Rojhilat di bêşa Ziman û Fîloloji ya Ermenîkî de bi cî dibe û di 1953'an de bi derenceyeke baş mezûn dibe.

Helbestên ku Hesen di xwendevaniya xwe de dinivîse di Rojnameya Riya Teze de têne çapkirin. Piştî zanîngehê di 1954-57'an de mamostetiya Ermenîkî dike. Di Radyo ya Erîvanê de edîtoriya bêşa kurdî dike. Di 1959-61'an de wek şêwirmend kar dike û pişt re bo perwerdahiya bilind diçe Lenîngradê û li wir di warê zimanzaniyê dixwîne. Di Enstîtu ya Gelên Afrîqayî de bêşa kurdolojiyê kuta dike. Bo ku deriyekî nû li helbesta kurdî veke bi helbestvanên kurdên Qafqasan re dikeve têkiliyê û bi hev re xebatên giran buha dikin. Beriya Riya Teze helbestên wî di rojnameya zanîngehê de têne neşrkirin.

### Azara bindestî û bêwetaniyê

Şikoyê Hesen ji 5 saliya xwe bi şûn de neçar dimîne ku xendeqên jiyanê re têbikoşe. Zaroktiya wî bi sêwitî, ciwantiya wî bi exsilî û navasaliya wî jî bi kerbên din ên giran û cûda têne histiran. Bêwelatî, sirgunî û bindisetî kerba dilê wî wek pençeşêrekê di bedena wî re dike û derûniyeke hêvî şkestî, wendakirî, xemgîn û badilhewayî rihê wî ditengijîne. Hesen di nava civakê de wek pêykerekî rih lê dûr dijî êdî.

Di helbestên xwe de jî avzêma rihê xwe bi pênûsê de diçilkîne û her helbesteke xwe weke ku bi penceyên teyrekî rihê xwe çixêzke dinivîse. Daxwaza mirinê tîp bi tîp kêlî bi kêlî di bin xalîçeya ku pêyv û hevol li ser niştecîne xwe radixe. Bersûciya jiyînê wek tokeke poz tûj bedena wî din ava xwînê de dihêle. Hemû êş û azara vê rewşê di helbestên xwe de dihewîne û her pêyvek, her gotinek wî wek ayetek qedîm dibe malê helbesta kurdî. Lê hezar mixabin ku tevî pêşengiya wî ya helbesta kurdî bo cîhanê qedr û qîmeta wî di nava kurdan de nayê zanîn. Bêyî xwêran, gelek rewşenbîrên kurd jî wî nas nakin. Gelek helbestên wî ji aliyê hin kesan ve weke ku yên xwebin têne çapkirin carina.

### Xwekujê helbesta kurdî

Hesen di helbestên xwe de bi piranî çanda kurdî û motîfên kurdistanî, hez a welat, humanîzm û têgihîştina netewî dikeline. Hin helbestên wî wek stran jî têne bestekirin ku yek ji wan strana Aramê Dîkran ya bi navê 'Zimanê Kurdî' ye. Şikayê Hesen di di jayana xwe pirtûkên xwe yên wek "Qalçîçek", "Tembûrê kurdan", "Merêmê Dilê Kurd" çap dike. Şikoyê Hesen di 1976'an de bersûciya jiyînê bi dawî tîne û xwe dikuje. Ew êdî dibe muntehîrê helbesta kurdî. Piştî mirina wî pirtûka wî ya bi navê "Perweza Wetan" tê çapkirin. Herwiha di sala 2008'an de jî bi edîtoriya Tosinê Reşîd pirtûka wî ya bi navê "Payîz û Ba" tê çapkirin.





## Helbestên wî digîjin cîhanê

Şêkoyê Hesen tevî ku dahatûyek baş û derfetên dewlemend li ber in, rûyê xwe ji wan badide û û berê xwe dide helbestê. Evîndarekî kurdî ye û bo pêşxistina ziman û helbesta kurdî xebatên mezin û bi qîmet dide ber xwe. Bi saya van xebatan Ehmedê Xanê, Melayê Cizîrî, Feqîyê Teyran, Cegerxwîn û Osman Sebrî bi berhemên wan dinase û bi gelek rewşenbîrên din ve bi hewildanek mezin wan di müfredata dibistanên kurdan de bi cî dike. Helbestê wî êdî digihîjin gelek deveran û li zimanên wek Gurcîkî, Abhazî û Rûsî têne zêdekirin.

Hesen di temenê xwe de bi temamî di nava mercên xirab de dijî. Exsîlî û bê derfetî destê xwe ji wî nake. Gelek helbestên xwe ji bo vê difroşe û carina jî bi heqekî biçûk helbestan dinivîse. Ew dem, demeke ku Sowyet di rewşeke ne baş de ye û li wir bi hezaran helbestvanên bê kar û di warê helbestê de jî jar dijîn. Hesen Fêrikê Ûsiv, Mîkayêlê Reşîd û Şikayê Hesen div ê demê de bandora helbesta Rûs, Ermen û Gurciyan a ne baş ya li ser helbesta kurdî hildiweşînin. Bi saya wan pêşveçûyeneke balkêş li welatparêziya kurdan dixemilînin û Şêkoyê Hesen wek mihengê sereke pêşengiya vê guherînê dike. Bo wî kurdî meseleya yekem e û wendabûna kurdî wek mirinê binavdike.



## Sarmaşık:

# Li Amedê Komeleya Xizir!

O.F Baran

Komeleya Têkoşîna Li Hemberî Xizaniyê û Pêşveçûna Domdar ya Sarmaşik ku berayi 7 salan li Amedê bi piştgiriya bi dehan saziyên civakî hatibû avakirin, tevî hemû astengiyan xebatên xwe yên bo xizanan didomîne. Komele ya ku destê xwe dirêjî xizanan dike di nava malbatên ku piştgiriyê jê digirin wek 'xizir' tê binavkirin.

Sarmaşık di 11 Nîsan a 2006'an de li Amedê bi piştgiriya 32 saziyên sivîl ku di nav de saziyên wek Baro, İHD, TMMOB, TTB, MÜSİAT, GÜNSİAD û Şaredariya Bajarê Mezin a Amedê jî heye hat avakirin û li ser têkoşîna bi xizaniyê re dest bi xebatên xwe kir. Di dema borî de gihîşt bi hezaran malbatan û li gor xebat û lêkolînên komeleyê xizanî li Amedê her diçe zede dibe.

Komeleya ku niha zêdetirî 4 hezar 500 malbatan re dibe alîkar, ji avabûna xwe vir de rastî gelek astengî û qedexeyan hat. Lê bi piştgiriya endamên xwe, li hember xizaniyê komele di nava xebat û projeyên balkêş de ye û piştgiriya komeleyê ya bo xizanan jî didome. Ji avakirinê vir vê ye komele li hemberî astengî û qedexekirinên Valîtiya Amedê jî têdikoşe û bi hedefa komuna bajêr xebatan didomîne. Komele wek qadeke pratîkê ya xweseriya demokratîk tê binavkirin.

Ji ber ku di çarçoveya projeyekê de Şaredariya Amedê bû şîrikê komeleyê, Wezareta Karên Hundir şandeyek şand bajêr û 14 rojan li ser xebatên komeleyê lêkolîn hatin kirin. Piştî vê jî raporek hat nivîsandin û di raporê de hate diyarkirin ku komele tenê bo xizanan kar dike û bêyî vê tu nelirêtî nayên kirin. Lê tevî vê rastiyê dîsa jî Walîtiya Amedê proje betal kir û piştgiriya ku komeleyê dixwest bigîhîne bi hezaran malbatan pêk nehat.

### Komeleya jinan

Piştî damezrandinê di bin bana komeleyê de bankayeke bakût hatibû vekirin û kesên ku komele piştgiriyê didê, bi qartên xwe yên endamtiyê tên û li vir çi pêwistiya wan hebe bê pere distînin û dibin malen xwe. Ji ber ku ji sedî 95 endamên ku tên vir jin in, sazî wek komeleye jinan jî tê binavkirin. Ji ber ku li Tirkiye di warê vê xabetê de Sarmaşık saziyeke taybet û pêşketî ye, li bajarên wek Stenbol, İzmir, Mêrsîn, Afyonê jî gelek kesan hatine ji tecrûbeyên komeleyê sûd wergirtine û li van bajaran jî saziyên wisa hatine vekirin.



### Pîvanên alîkariyê

Ji ber ku li Amedê xizanî di salên şer de li her deverên bajêr belav bibû, bi hezaran kesî heta niha bo piştgiriyê serî li komeleyê daye. Lê komele ji bo ku bikaribe xwe bigîjê malbatên ku rewşa wan bi rastî ne baş e, bi kriter û pîvanan piştgiriyê dide. Bo ku malbatek bikaribe piştgiriyê bigire divê kesekî bikaribe di pîşeyekî de bixebite tunebe. Heke ku mêr di malê de hebin û astengiyên wanên xebatê tunebin, ku çiqas xizanbe jî nikare alikariya komeleyê bistîne. Lê ku mêrên malê ji ber astengiyên tenduristî nikaribin bixebitin û ev bi raporan bê tespîtkirin, komele piştgiriya wan dike.

Finansa komeleyê jî dîsa ji welatiyan tê. Kesên ku derfetên wan hene û dikarin piştgiriya komeleyê bikin, li gor mercên xwe her meh hinek pere li ser navê komeleyê radizînin. Komele wan pereyan berhev dike û ji bo malekê çi lazim be (zexîre, melzemeyê paqijiyê) tên û mehê carekê pêwistiyên xwe dibin malen xwe. Di vir de tişta balkêş ev e ku kesên alîgir û kesên ku alîkariyê digirin hevûdin nabînin. Wek marketekê jin dikevin hundirê bankeya bakût û qerta xwe didin kaseyer û pişt re jî suxreyên xwe dibin mal.

Sekreterê Giştî yê komeleya ku niha lig elek bajar û navçeyên kurdîstanê şaxên xwe vekirine Şerif Camci di derbarê xebat û armanca komeleyê de ew gotin anîn ziman:

Li Tirkiyeyê û bi tevahî li dinyayê jî kevneşopiya têkoşîna bi xizaniyê re bi armanca qedandina xizaniyê nameşe. Ew pirsgirêka navnetewî bi rastî roj bi roj kûr dibe û bersivekê jî ji xwe re çênake. Eynî nêzîkbûn bi destê dewleta Tirkan, saziyên wan ên sîwîl û bi cemaatan jî li Kurdistanê wenî tê meşandin. Armanc; hîçkirina rûmetê ye, gelê Kurd bi xizaniyê teslîm girtine, terbiye kirine û bi xwe ve girêdane. Lê ez dikiarm bêjim meşrûyeta vê dewletê li Kurdistanê nemaye. Tekiliya dewlet û hemwelatiyan gelek sist bûye. Çinku dewlet berê xizan dike û piştre bi alikariyê dixwaze gelê me bi xwe ve girêbide.




Komela SARMAŞIKê da ku li hember vê konsepta "Xizankirin, alîkarî û bi xwe ve girêdayînê têkoşîneke xurt bimeşîne û vê konsepta bê exlaq eşkere bike derket rê, hat dameziran-din.

Komele her çiqas ne saziyek "siyasî" be ji, gelek caran ji aliyê saziyen dewletê ve bû hedef û bi êrîşên siyasî re rû bi rû ma. Ji her alî bi her awayî hatin ser me. Di lêkolînên me yên "Nexşeya Xizaniyê a Bajarê Amedê" de encama herî balkêş ev e: Nêzî 5000 malbat, yanî nêzi 30000, ji xizaniyê wê de di sînora birçîbûnê de ne. Yek qurişek qezancên van malbatan tune ye. Di malbatê de yek kesî ku kanibe bixebite tune ye. Bernameya me ya ku em zêde li ser disekinin, Bernameya Perwerdekirina Zarokan e.




Me 130 zarok ji kolanan, sûkan top kirin. Ji zaroyan re me berpirsiyarî dan hinek mamosteyan. Bi her awayî her çi be em ji wan re dibin alîkar. Armanca me ev ku ji dibistana seretayî heya doktora xwe biqedînin em li hinda wan bin û ji wan re daxwazen wan bîne cih. Ji wan zaroyan, 32 kesan bi alikariya Sarmaşikê zanîngeh qedandin û xwe û malbatên xwe "xelas kirin". Niha ew jî vê bernameya me ya perwerdehiyi re alîkariyê dikin.

Bi pergela Sarmaşıkê 4 hezar 300 malbat, yanî nêzî 28000 kes alîkariyê digirin. Wê alîkariyê her meh, heya îhtiyaciya wan pê hebe her meh distînin. Di aliyê piştgiriyê de me li cîhane yekem car me tiştek çêkir: Her meh 9000 kes dibin alîkarê Sarmaşikê.. Ji bankayên xwe re talîmata alîkariyê dane û piştgiriyê didin me. Xeynî wê 56 saziyên li Amedê jî şîrike bankeya bakûtê ne.

# Pirsgirêka herî mezin belavkarî ye

Dosya ya di derbarê wêşangeriya kurdî de berdewam e. Di vê bêşê de me berê xwe da Edîtor û xwediyê Weşanxaneya Tevn û Kurdistan Mehdî Tanrikulu. Li gor Tanrikulu pirsgirêkê wêşana kurdî ev in...





***Wêşangeriya kurdî, tevî ku hêjmara wêşanxaneyan zêdetir bûye û hin derfet ji berê baştir in niha di çi halî de ye?***

Mirov dema li pêvajoyên afirînê dinihêre, ev rastî derdikeve pêşberî me; di derfetên kêm de afirînerî bêhtir pêl da ye û derketiye pêş. Ev rastî di warê birêkûpêkirina weşangeriya Kurdî de jî derdikeve pêşberî me. Wek bêşek girîng a qada rewşenbîriya civaka Kurd weşangeriya Kurdî jî wek qadeke têkoşîna azadiya civaka kurd qadeke têkoşînê ya girîng bûye. Piştî zagon hatin guhertin şûn de jî wek pratîk astengî hîn bêhtir hatin stûrkirin. Êdî rewşenbîr, nivîskar li kolanan dihatin kuştin ji aliyê hêzên dewletê ve. Di nava van bêderfetiyan de weşangeriya Kurdî bipêş ket. Her sal hejmara weşanxaneyan zêdetir bû, gelek berhem jî hatin weşandin û ev xebat ewê berdewam bike lê hin alî jî kêm man. Wek xebatek bingehîn, belavkarî hîna di asta tê xwestin de nîne. Ji ber vê yekê gelek berhem nagihîjin xwendevanên xwe.

***Xwendina pirtûkên kurdî li çi astê ye? Firotina pirtûkan têrî xwe fînansebûna wêşanxaneyan dike an na? Xwînêrên kurd zêdetir çi dixwînin? (Wêje, felsefe, dîrok, civaknasî, psîkolojî hwd.)***

Xwendina pirtûkên Kurdî her ku diçe zêdetir dibe. Bê guman di asta mirov jê razî be nîn e lê her ku diçe bi pêş jî dikeve. Pirtûkên baş werin belavkirin ango bigihîjin xwendevanên xwe, xwe finanse dikin. Lê belê ji ber saziyek belavkariyê ku xwe bigihîne hemû civaka kurd nîn e, pirtûk bi piranî nayên belavkirin, ango nagihîjin xwendevanên xwe. Ji bo belavkariyê xebatek cuda pêwîst e. Bê cudakarî hemû berhemên weşanê; di serî de pirtûk, albûm, rojname, kovar û hwd. divê bi destê saziyeke ve bîrêkûpêk were belavkirin û xwe bigihîne hemû civaka Kurd. Her çar parçeyên welat û hemû cihê kurd lê dijîn. Pirsgirêka herî girîng belavkarî ye.

Xwînêrên Kurd hemû beşên nivîsê dixwînin. Xwendevanên beşên zanistê, bivê nevê hebikî hejmara wan kêmtire ji xwendevanên wêjeyê. Bala mirov dikişine; di demên dawîn de mîzah gelek bala xwendevanan dikişîne.

Rewşa Wêşangeriya Kurdî 3

Rawîn Stêrk

***Sazî û partiyên kurdan, şaredarî û dezgehên din û nêzikahiya wan a li hemberî wêşangeriya kurdî çawa ye?***

Sazî û partiyên kurdan di derheqê xwedîderketina weşana kurdî de pir kêm e. Şaredarî dikarin li hin xebatan xwedî derkevin, destek bikin li gor derfet û rêziknameya xwe lê bele xwedîderketina wan pir kêm dibe, yekalî dibe veşartî dibe. Ew jî nabe bersiva birîna weşangeriya Kurdî.

***Di navbera wêşanxaneyan de têkiliyek heye, li hemberî pirsgirêkan mildayînek hevpar heye?***

Di nava weşanxaneyên Kurdî de jî pirsgirêk hene. Pêwendiyên wan li gor tê xwestin nîne. Ji xwe dewlet derfet li ber me nahêle, îca em jî li hember hev dexesî dikin. Em jî ji hev re nabin alîkar, mil nadin hev.

Her wiha hikûmeta herema Kurdistanê (Başûrê Kurdistanê) jî hevalbendî û desteka weşangeriya Kurdî nake. Pêşî hêvî jê hebû ku ji xebatên nateweyî re bibe sîwan lê mixabîn ew jî bi siyaset tevdigerin û wek nirxekî natewayî weşangeriya Kurdî bêdestek dihêlê, wek ku xebatek biyaniyan be tevdigere.

***Têkiliyên wêşanxane û nivîskarên wan bi taybetî di warê aborî de di çi rewşê de ye?***

Ji ber bêderfetiyên weşanxaneyên kurdî têkiliyên bi nivîskarên xwe re jî li gor tê xwestin nikare bide meşandin. Di warê aborî de ev tengasî bêhtir derdikevin pêş me. Nivîskar, bêguman dixwaze ji bo berhema xwe derfetek aborî bidest bixîne lê mixabin rewşa weşanxaneyê ji ber ku ne li wê gorê ye carna tengasî derdikevîn.

> "Divê şaredariyên kurdan ji wêşanxaneyan xwedî derkevin û wêşanxane jî di nava xwe de hevkariyekê dêynin. Ji ber ku pirsgirêka mezin belavkirin e, divê em bi hev re li çareyekê binêrin.

***Li gor we astengiya sereke ya li ber wêşangeriya kurdî çi ye? Û Pêşniyarên we çi ne di derbarê xwênêr û saziyên din yên kurdan de û ji bo wêşanxaneyên din?***

Astengiyên sereke, xwedîderketina hemû sazî û dezgehên civaka kurd li karê weşanê xwedî derkevin. Her wiha şaredarî li weşanxaneyan xwedî derkevin. Hemû weşanxaneyên kurdî dive xwe wek berhemên natewayê kurd bibînin û nirxên hevpar derxînin pêş. Li ser hîmê rêzgirtina hev ji hev re bibin destek. Vê destekê wek sazî divê destnîşan bikin. Beriya hemû tiştî divê saziyek hevkariyê ya weşanxaneyên kurdî avabibe. Mafê hemû weşanxaneyan tê de werin parastin. Li ser vê bingehê karê belavkariyê ji bo hemû weşanxaneyan hemêz bike were pêkanîn.

***Wêşanxaneyên tirkan jî dest bi wêşana kurdî kirine. Hûn vê çawa dinirxînin û bo wêşanxaneyên kurdî çi giringiya wê heye?***

Wek TRT 6, Wezareta çandê ya Turkiye'yê jî dest bi weşana kurdî kirine. Ew dewleta ku hetanî niha kurdî qedexe kiribû, ji bo axaftina kurdî li gund di dibîstana seretayî pola 3. de, darê bi bizmar li destê min xistibû çewa bû ku ew bi xwe dest bi weşanê bike gelo? Divê mirov li ser hinek bifikirê.

***Di derbarê wêşanxaneya we de agahî: Kêngê hat avakirin, li ku wêşanê dike, heya niha çend kitêb çap bûne?***

Ez piştî bîst sal jiyana zindanê 2002'an de di Enstîtuya Kurdî ya Stembolê de xebitîm. Wê demê min bêhtir jibo nirxandina berhemên girtîgehê Weşanên M ava kir û bi qasî şanzde pirtûk weşand. Pirtûka pêşin di Girtîgeha Amedê de cureyên îşkencê, nivîskar Zulfukar Tak. Ji wê deme vir ve bi qasî bîst û pênc doz di derheqê minde hate vekirin û min di hemûyan de bi kurdî parastina xwe kir. Dûv re min di sala 2005an de Weşanên Tevn vekir. Ji wê çaxê ve Weşanên Tevn berdewam dike û digel yên tên amadekirin bi qasî 210 pirtûk weşandiye. Digel Weşanên Tevn di sala 2013an de bi navê Weşanên Kurdistan min weşanxaneyek din jî ava kir. Di vê weşanxanyê de pirtûkek hatiye weşandin. Pirtûka zimanzan Çeto Ozel di vê weşanxaneyê de hatiye çapkirin.








# Di muzîka kurdî de rawestgeheke 'cerrahî'




Bêzar Bêwar

"Berî Her Tiştî Kurd im", "Agir û Mirov", "Êvar e" Kulîlka Azadî" ew stran di salê 1990'î de wek ayetên qedîm li ser zimanê kurdên Bakûr niştecîbûn. Salên ku ne kurd û nejî kurdî di nava hevokekê de cîh digirt, ew stran wek serhildanek bêdeng bi ezmên ve hildikşiyan wek qêrînek bêdeng... salên ku pêyva 'kurd' an jî 'kurdî' bi tena serê xwe dibû sedema kuştin û cezakirnê. Salên ku xwîn li bajar û navçeyên Kurdistanê wek laserekê diherikî. Dema ku kasetek di malekê de dihate bidestxistin, an jî li ser kesekî dihate girtin, fermana mirinê ji heqîwê derdiket û bo kurdan gotina stranan û guhdarkirina wan berdêlek mezin dixwast. Ew sal, salên ku guhdarkirina muzîkê wek tiştekî lüks bû, kurdan encax bo tiştekî stran digotin, ew jî bo şîn û matemê bû û tiştê ku wan bigota jî zêmar bûn.



Lê ew rewş dê wisa dewam nekira û li paştexta serdestan wê ew paradigma têk biçûya. Wisa jî bû. Wekî ku berxwedana kurdên Bakûr li paytextê destpêkir, bo muzîka kurdî jî li Enqere qêrînek bilind bû û bi qelîteya xwe tehmeke bê hempa di qirika Kurdistaniyan de hişt. Ew jî, helbet Koma Amed bû. .

Endamên Koma Amed ku temamê wan li Enqere, li Zanîngeha Hacettepe di fakûlte ya tipê de dixwendin û bi sedemên 'kurdbûnê' hevûdin naskirin di sala 1987'an de carina li malên xwendevanan tên ba hev û din ava xwe de stranan dibêjin. Kî bizane ku dê ew şevên paytexta sar û bi mirûzê tirş wê veguhize rojên aram, zelal û bi muzîkê xemilandi...

Endamên komê yên destpêkê Ebdulmelik Şêxbekir, Fîkrî Kutlay, Gülşen Çelik, Fikri Kutlay, Rohat Kutlay, Savaş Çakmak, Ahmet Kaya û Musa Kart di 87'an de di wan şevên Enqere de bi derfetên tuneyî, enstrûmanên kêm û nebaş, li ser muzîkê hûr dibin û bêyî ku hesabên avakirina komê, derxistina kaset û muzîka profesyonel bikin kevirê bingeha Koma Amed datînin. Diba di sala 87'an de di şeveke Diyarbekiriyan ku xwendekarên kurd li hev dicivin de hin tiştan dikin. Çend stranen enstrümantal qeyd dikin û bê gotin tenê muzîkê lê dixin. Ew şev, bo Koma Amed dibe şeva zayînê. Mûzîka wê şevê di guhên guhdaran de jî dimîne û bo endamên komê jî dibe sedema dewamkirina xebatên muzîkê.

Di 88'an de weke komeke muzîkê dest bi xebatê dikin û bêyî ku navekî li xwe dêynin, dîsa li malên xwendewanan, bi dizî û bi dengekî nizm lê dixin û dibêjin. Di nava endamên komê de navekî balkêş, jîr û di warê muzîkê de pêşketî heye. Ebdulmelik Şêxbekir ku ji kurdên Sûriye ye û hem dinivise, hem dibêje û hem jî di warê çanda kurdî de pêşketî ye. Li gor endamê komê Fikrî Kutlay, ger ku ew nebûya, dê kom jî nehata avakirin û ew xebat jî nehata kirin. Şêxmelîk bi zanîna çandê û hunermendiya xwe bi her awayî pêşengiya komê dike, pişt re di xebatên hin komên din de cî digire û pişt re jî berê xwe dide çiyayan û di 92'yan de jiyana xwe ji dest dide.

Beriya vê dîsa li Enqere xebat didomin û di sala 1990'î de kom dest bi xebatên derxistina kasetekê dike. Lê ne kesekî ku alîkariya wan bike, ne saziyeke ku bikaribin lê bixebitin û ne jî kesî ku qeyda wan bigire heye. Ji ber kurdî 'agir e' û ki destê xwe bide, ew dest tê jêkirin. Lê endamên komê bi zimanê xwandevaniyê yekî tirk bi navê Mete 'dixapînin' û denge xwe li stüdyoya wî tomar dikin. Wê demê li Tirikye ne saziyeke kurdan ya çandî heye û ne jî birêxistinbûn. Tevî hemû astengî bê derfetiyê, di demeke kin de tomarkirina deng bi dawî dibe û kaseta yekem ya komê, amede dibe. Navê kasetê diyar e, 'Kulîlka azadî' ku di heman demê de navê straneke di kasetê de ye jî û ji helbesta Muzaffer İlhan Erdost hatiye wergerandin e, lê navê komê hîn ne diyar e.... Belê albûm, an jî kaset amade ye lê navê komê hîn nehatiye bîra kesî.

Wê şevê li ser navê komê gelek nîqaş tên kirin û her kes hin navan pêşniyar dike. Qêrîna Bêdeng, Koma Bêdeng, Serhildan û hwd. gelek nav tên û diçin, lê pişt re kes nizane ku ji devê kê derdikeve lê yek 'Koma Amed' diavêje ortê. Û wê şevê nav li 'zarokê di dergûşê de tê kirin' û Koma Amed wê şevê jidayîk dibe...

Pişt re kaset derdiçe lê qedexeya li ser kurdî her der dorpêç kiriye. Kaset li piyaseyê nayê firotin û dîtin, dest bi destan belav dibe û yek ji yekê tê zêdekirin û di demeke kin de li tevahiya Kurdistanê belav dibe. Piştî 'Kulîlka Azadî' li Stenbolê Navenda Çanda Mezopotamya (NÇM) jî tê avakirin û kom berê xwe dide stenbolê. Xwendevanê tipê dibistana xwe qedandine û ji bo kar û perwerdahiya bilind tên Stenbolê. Li vir jî têkiliya xwe bi NÇM'ê re datînin û daxwaza ku beşdarî saziyê bibin dikin. Piştî demekê daxwaza wan bi cî tê û Koma Amed êdî wek komeke NÇM'ê xebatên xwe didomîne. Sal 1993'yê...

Di heman salê de amadekariyên kaseteke nû tê detpêkirin û 'Agir û Mirov' derdiçe. NÇM bo komê dibe derfeteke mezin. Li wir gelek navên nû ku di nav de Serap Sönmez, Suleyman û Serhat, Memo jî hene beşdarî komê dibin. Koma Amed Êdî wek dibistaneke muzîkê dixebite û li gelek dewerên cîhanê vexwendina konseran ji wan re tê. Bi navê 'Serhildan' tûrneyekê lidardixin. Wek navê tûrneyê hemû konserên wan dizivirin serhildanê. Kom di dema xwe ya herî baş de ye û afirinêriya wan 'hêkan li ser hêkan' dike.

Piştî ku êdî navê komê ji aliyê hemû kurdan ve te bihîstin û derdorên muzîkê guhê xwe ji Koma Amed re bel dike, vê carê kaseta bi navê 'Dergûş' derdiçe ku asta muzîka kurdî ber bi jor ve dikşîne.

Kom di dema xwe ya 'zerinî' de ye û de devê hemû kurdan de stranên vê albümê ajlo didin. Piraniya endamên wan tên tarizandin, pirsgirêka leşkeriyê li ber wan derdikeve. Ji ber ku li gor pîvanên rêxistinê ji tirkan re leşkerîkirin qedexe ye, gelek endamên wan duçarî sirguniyê dibih. Kom belav dibe û çend endamên wan dimînin û ew jî bi navê Çar Newa komeke nû ava dikin. Yên ku çûne sirguniyê dixwazin ku Koma Amed li wir dewam bike lê sazî destûrê nade ku 'Koma Amed sirgun be' û navê komê êdî li holê radibe.

Piştî vê Çar Newa albûma 'Sî' amade dike û piştî demekê hin endamên wê jî bi neçarî berê xwe didin sirgûniyê. Herwiha rêwitiya Koma Amed bi avayekî fermî bi dawî dibe û berhemên ku hatine afirandin jî wek qîmeteke giran buha di nava muzîka kurdî de cihê xwe digire û hîn jî li cihê xwe ye...

Koma Amed wek tehmeke di nêvî de mayî di qirika guhdarvanan de dimîne. Ji ber ku endamên komê yên ewil hemû xwandevanên tipê ne, di xebatên wan de jî hassasiyet û 'obsesîfiyek' ku asta muzîka wan bilind dike meyayê xwe dide komê. Ji ber wê ku meriv bo Koma Amed bêje 'rawestgeheke cerrahî' di cî de ye û berhemên komê hîn jî di nava berhemên ku herî zêde bala muzîk hezan dikşîne cîh digire...

**Not: Bo agahiyan spas ji Fikri Kutlay û Ahmet Kaya re.**

Mijdîn Memdûh

## Ganî Mîrzo

# Jiyanek li ser şopên Ziryab



Ganî Mîrzo k udi sala 1968'an de li Qamişlo'yê jidayîkbû, piştî perwerdahiya seretayî li Helebê bi cî dibe û li wir li ser muzîkê neraq û xebata wî jî destpê dike. Mîrzo di çarsaliya xwe de li ser muzîkê hûr dibe. Ji Nûrî Esqedar û Prof. Qedrî dersên muzîkê digire. Li ser muzîka Hîndîstan, Îran û Kurdistanê lêkolîn û xebatan dike. Piştî ku li gelek welatan dijî, berê xwe dide Îspanya. Û wek mîrê flamenkoyê Ziryabê kurd ew jî li ser muzîka Edulusiyan dixebite û hewil dide ku bigîhije tarzên kurdî. Bi riya flaemnko ya ku enstrûmanên kurdî bi kar tên dixebite, tarza myrzai ku wek jazz a kurd tê binavkirin diafirîne.

Mîrzo ku li cîhanê wek yekem kesê ku bê tezene ji ûdê dixe tê zanîn hîn jî li Barcelona'yê dijî û li Akademî ya Ziryab ya Mûzîkên Rojhilat wek berpirs kar dike. Ji ber ku li ser jiyan û xebatên Ziryab emre xwe daye, meriv dikare bibêje ku xwedî jiyaneke ku li ser şopên Ziryab didome ye. Ganî Mîrzo li ser xebat û mûzîka xwe pirsên me bersivandin.

***Tu dikarî di derheqê jiyan û rêhevaliya xwe ya bi muzîkê re me agahdar bikî? Tu ji Qamişlo'yê yî û pişt re riya te bi welatên din dikeve. Tû û muzîk çawa li hev hewiyan?***

Belê, rast e ez ji Qamoşlo'yê me lê bo xwendinê ez di sala 1989'an de ji wir veqetiyam û bo xwendinê çû Helebê. Ez hîn zarokbûm meraqa min a muzîkê hebû. Min bi zaroktî dest bi muzîkê kir. Min li Helebê du salan li ser muzîkê perwerdahî girt. Wê wextê ne tenê li Helebê li tu bajaran konserwatûar ân jî saziyên ku li ser hunerê meriv bikaribe xwe perwerde bike tunebûn. Min wê demê dixwest ku di warê muzîkê de xwe pêşxim û perwerdebûna xwe bidomînim. Piştî çend salan min dît ku berê min li Elmanya ye. Min li wir dît ku di navbera muzîka gelan de gelek tişt dişibin hev û gelek formen wan hevkarî û alikariya hev dikin. Pişt re min berê xwe da Îspanya û min dît ku davbera muzîka latîn û ya rojhilata navîn de jî bêhtir nêzikahiyek heye. Di warê dîrokê de jî hin tişt dişibin hev û kultura vir û ya rojhilata navîn ji hev gelek sûd wergirtine. Şansê min î baş ku ez li bajarekî baş im ku di warê muzîk û çandê de xurt e û derfet hene.

***Têkiliya ûd û muzîka kurdî ji ku tê gelo têkiliyek çawa di nekeba wan de heye, di nava muzîk û muzisyenên kurd de lêxistina ûdê kêm e. Rêwitiya wan çawa gihîştiye hev?***

Bi ya min girêdanek mezin bi tarîxa ûdê û ya muzîka kurdî de heye. Eger em vegerin berî 40 û 50 salî û li gelek navên ku muzîka klasîk ya kurdî çêdikin binerin em dikarin têkiliya ûd û kurdan bibînin. Gelek kesên ku di nav de Tahsîn Taha jî heye ûd bi kar anî ne di xebatên xwe de. Bi taybetî li Kurdistan'a Başûr û li her deweren Kurdistanê ûd gelek bi kar anîne. Li mintiqa me li Serêkaniyê jî hunermendekî gelek mezin hebû û bi malbata xwe tevahî li ser ûdê dixebitîn. Ûd enstûrmanekî zehmet e bi rastî. Kurdan pêk aniye û kurdên me yên Bakûr jî ji saz û tembûrê bêhtir ûd bikaranîne. Kurdên me yên Rojhilat jî bikaranîne. Ji ber ku Mezopotamya erdnîgariyeke pir dewlemend e û her cûreyên hunerê hatine afirandin û gelek enstrüman jî li wan deweran hatine bikaranîn. Di nava asûrî û hin gelên din de şerekî hunerî hebû. Herwekîdin di navbera gelan de şerên hunerî hebûn ku her welatekî dixwast ku hunera xwe pêş bixin. Mezopotamya cihekî wisa ye. Hunera me kurdan û ya li Mezopotamya'yê xwedî dîrokeke pir kevn e.

***Di rîtma muzîka jaaz û rîtma Kurdistanê de çi wekhevî û nêzikahî hene gelo? Hûn niha li ser jaazê dixebitin, çi tiştên balkêş derdikevin pêşberî we?***

Di nava muzîka ku ez çêdikim de jaaz jî heye û flemenko jî he ye. Di nava muzîk û bêşên hunerê yên din de gelek form bi hevparî tên bikaranîn. Muzîka me kurdan gelek gelek dewlemend e. Derketina jaazê li welatên xizan yên Emerîka ya Latîn e. Ew rengînî, qêrîn û protesto ya li hemberî bê derfetiyan li Kurditanê jî he ye. Helbet seranser ne yek in. Li her welatekî formên li gorî xwe hewandine. Lê di pir cîhan de formên heman em dibînin.

***Tu jî wek Ziryab di rêyêk pir dirêj û tijî xebat de gihêştî vê rojê. Wî jî li ser ûdê gelek xebat kirine û têlê çaremîn lê zêde kiriye. Tu jî yekem hunermendî ku bê tezene li ûdê dixî?***

Belê rast e. Piştî ku ez hatim Îspanya'yê ez hinekî li ser dîroka gîtarê ketim nava lêkolînan. Ji xwe gîtar ji ûdê tê. Ji malbata ûdê ye û dîroka wê 150 sal jî tüneye. Yanê tarîxa gîtarê pir ne dirêj e. Wek hun zanin gîtar bi tiliyan, bê tezene tê lêxistin. Lê li gel vê rastiyê ûd xwedî dîrokeke bi hezaran sala ne. Heke ku ew bi tiliyan tê lêxistin divê ûd jî bê lêxistin. Pişt re ez ketim nava xebat û cerban. Piştî gelek ceribandinan min dît ku bi tilî lêxistin dengekî cûda dide ji yê tezene. Di dîroka muzîka rojhilat de pêşketina gîtarê pir derneket holê. Lê li rojava di dawiya 70 salî de gelek pêşketin hene. Û dîroka wê hatiye qeydkirin. Piştî ku ez li ser vê dîrokê hûr bûm ez têgihîştim. Ez bi gelek kesan re jî ketim têkiliyê, min gelek xebat û lêkolîn kir lê kesekî tiştek negot. Pişt re min ceribandin û bikaranîna gelek teknîkan ev tişt bi dawîkir û ez gihîştimê ku teknîka bê tezene ya lêxistina ûdê he ye.

## Dengê ûdê dengê qirika jinê ye an dengê qirika mera ye?

Pirsek pir xweş. Siheta te xweş. Pir bêşên ûdê hene. Di dema Osmaniyan de pîrekên qesrê, pîrekên mezinan jî li ûdê dixistin. Lê ûda wan biçûk bû. Lê ya ku mêran lê dixistin mezin bû. Meriv dikare bêje dengê ûdê nerm û nazik e lê bêhtir meriv dikare bêje dengê qirika mêra ye.

***Ez dixwazim pirseke taybet bo te bikim. Gelo dengê ûdê dengê qirika jinê ye an dengê qirika mêr e?***

Pirsek pir xweş. Siheta te xweş. Pir bêşên ûdê hene. Di dema Osmaniyan de pîrekên qesrê, pîrekên mezinan jî li ûdê dixistin. Lê ûda wan biçûk bû. Lê ya ku mêran lê dixistin mezin bû. Meriv dikare bêje dengê ûdê nerm û nazik e lê bêhtir meriv dikare bêje dengê qirika mêra ye.

***Ku em werin ser rêwitiya te û ya Ziryab... Hûn herdû jî di rêyek dirêj de meşiyane. Gelo te dizanî ku riya te wê derkeve ser ya wî û çavkaniyek wek Ziryab wê derkeve pêşiya te?***

Zor spas ku te riya me şiban hev. Ez li cem Ziryab xwandevanekim. Ziryab kesayetiyeke mezin e. Min jiyana wî, xebata wî bi temamî xwendiye. Ez çûme cihê ku ew lê jiyayî, lê bûyê mêvan. Bi rastî wî gelek zor û zehmetî kişandine. Ziryab ji min re bû îlham. Li Enderûn, li Îspanya şopên wî gelek kûr û mezin in. Wî li ne tenê li ser muzîkê, li ser xwerin, cil û berg, li ser civaknasî û astronomiye jî xebat kirine. Wî pêşketinek gelek mezin çêkir li ser jiyana civakî.

Min jiyana wî wek mamosteyek û wek hevalekî da ber xwe. Muzîka me wek behrekê ye. Û Ziryab jî ne tenê di derheqê muzîka Rojhilata Navîn, bo muzîka cîhanê gelek gelek tişt hiştine. Ziryab kurd e lê muzîsyenekî cîhanî ye. Ez dizanim ku xebatek mezin j imin re jî hiştiye û ji gelên cîhanê re jî.